

دانای ئەحمەد مەجید:

## وەک پارێزگاری سلێمانی ئاسوودەم و ئاسوودە نیم

13 ◀



بەرپرسێکی بەریتانی دەربارەی جلی کوردی:

## ئەو شتە جوانەتان بۆ لێ شاردووینەتەوە؟

16 ◀



کوردێک لە هۆڵەندا:

## لە سەر درکاندنی "نهێنییەکانی سوعاد" لەکار دەردەکرێ

7 ◀


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA








Deutschland, Österreich, Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Denmark 15,00 DKK

Hejmar/Nr. 16 | 20. Cotmeh/Oktober 2009 | www.rudaw.net


## Barzanî wezîrên nû dixwaze



*Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî* *(Wêne: Daylife)*

**Silêmanî (Rûdaw)** - Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî ji serokwezîrê nû Dr. Berhem Salih û cîhgirê wî Azad Berwarî daxwaz kir ku di kabîneya nû ya hikûmetê de wezîrên nû û yên xwedî liyaqat bên wezîfedarkirin. Di vê navberê de çav li rê ye ku hejmara wezaretan bê kêmkirin û di hikûmetê de reformeke berfireh bê pêkanîn. ▶ 3

Têkoşîna hikûmetê li dijî gendeliyê

## Hêviya Kurdistanê alîkariya navnetewî ye



*Ciwanên Kurd bi hêvî ne* *(Wêne: Daylife)*

**Hewlêr (Rûdaw)** - Hikûmeta Herêma Kurdistanê li dijî gendeliyê hewldanên xwe didomîne. Hikûmet bi mebesta nehiştina gendeliyê bi şîrketa pispor PricewaterhouseCoopers (PWC) re girêbesteki mohr kir. Şîrketa navnetewî ya şêwirmendiyê PWC di têkoşîna li dijî gendelî de alîkariya saziyên navdewletî û 150 hikûmetên cîhanê dike. PWC li dijî gendeliyê ji bo Kongres a Amerîkî û Netewên Yekgirtî jî amojgarî dike û li Rojhilata Navîn ji xwedî toreke berfireh e. ▶ 6

PKK "komên aştiyê" dişîne Tirkiyeyê

# "Emê îspat bikin ku em aştîxwaz in"

*Piştî banga Abdullah Öcalan, PKK biryar da ku sê "komên aştiyê" bişîne Tirkiyeyê. Li Silopiyê bi mebesta peşwazîkirina "komên aştiyê" yên ku ji Qendîl û Mexmûrê bi hezaran kes civiya. Li Stenbolê ji bo koma Ewrûpayê amadekarî tê kirin. Hikûmeta AKP'ê jî ji bo şopandina rewşê ji Enqerê 'waliyek taybet' şand Kurdistanê.*



*Gerîllayên HPG'ê*

**Köln (Rûdaw)** - Piştî deh salan PKK careke din "komên aştiyê" dişîne Tirkiyeyê. Ev sê kom yek ji Kampa Mexmûrê, yek ji Qendîlê û yek jî ji Ewrûpayê ye. Çav li rê ye ku bi giştî nêzîkî 50 kadro, gerîlla û niştecihên Kempa Mexmûr derbasî Tirkiyê bibin.

Du komên ku ji gêrilla û kadroyên PKK'ê yên Ewrûpa pêkdihatin di sala 1999'an de çûbûn Tirkiyeyê. Endamê ev herdû koman hatibûn darezandin bi salan cezayê zindanê girtibûn.

Rêxistin û rayedarên DTP'ê bi armanca pêşwazîkirina hersê koman li nêzî balafirgeha Stenbolê û li Silopiyê pêşiya deriyê Brahîm Xelîl kon vekirin.

Hikûmeta AKP'ê jî ji bo amadekariya pêşwazîkirina koman li Enqerê waliyek tayîn kir. Koma ku ji Qendîlê diçe ji 8 gerillayên ku tevlî şer nebûne pêk tê. Serokê KCK'ê Murat Karayılan di daxuyaniya xwe de balkişand ku ew ji bo fersenda aştiyê 50 kes dişînin Tirkiyeyê. Li gor Karayılan endamên koman xebatkar û kadroyên PKK'ê ne. Li gor agahiyan ji Kampa Mexmûr 26, ji Ewrûpa 16 û ji Qendîl jî 8 kes wek 3 komên cuda wê derbasî Tirkiyeyê bibin.

**"PKK ne astenga li pêşiya aştiyê ye"**

Cîgirê Serokê Konseya Koma Civakên Kurdistan KCK Duran Kalkan ji Rûdawê re got ku "ewê îspata aştîxwaziya PKK'ê bikin e." Duran Kalkan di daxwiyaniya xwe wiha berdewam kir: "Herçiqas em dizanin wê Tirkiyê van grûban desteser bike û bixe zindanê û wek 'terorist' berê xwe bide wan jî, lê bi vî awayî emê bersîva hemû aliyên ku dibêjin qaşo 'PKK astengiyan li pêşiya aştiyê derdixe,' bidin. Bi vê pêngava xwe, em ji bo aştiyê derfetekê diafirînin."

Kalkan da zanîn ku pêngava wan ji bilî ku daxwaza rêberê wan e, bersîveke ji bo Amerîka, Ewrûpa, saziyên aştîxwaz û mafparêz ên navdewletî û hêzên Başûr e jî.

Kalkan eşkere kir ku Îran, Tirkiyê û Sûriyê li gel Malikî hewldidin ku ne tenê PKK'ê bi giştî tevgera Kurd qels bikin: "Pêwîst e berî her aliyekî din desthilatdarên Başûr neyên lîstika Tirkiyê. PKK ne tenê li Qendîl e, lê li Bakurê Kurdistanê ye."

Li aliyê din Serokkomarê Tirkiyeyê Abdullah Gül li ser daxwuyaniya PKK'ê got; "xebereke xweş e."

**Fersendeke mezin**

Rayedarên DTP'ê jî hatina "komên aştiyê" ji bo pêvajoyê wek fersendeke mezin û wek gavavêtina aliyê Kurd dinirxînin û hêvî dikin ku kesên tên, wek sala 1999'an neyên girtin. DTP bi armanca pêşwazîkirina koma aştiyê ya ku wê ji Ewrûpayê bi rêya hewayî here Stenbolê, li Navçeya Fatihê 'konê aştiyê' vekir. DTP ji bo koma ku çav li rê ye di 23'ê cotmehê here Tirkiyeyê wê li pêşiya Balefirgeha Atatürk a Stenbolê jî mitîngekî lidarbixe. Kom wê ji hêla 100 parêzeran ve jî bê pêşwazîkirin. Gelek saziyên civakî, çandî û odeyên pîşeyî jî wê piştgiriyê bidin.

Li Amedê jî 57 rêxistinên civakî yên sivîl bi deklerasyonekê piştgirî dan biryara şandina "komên aştiyê." Saziyan xwest ku dewleta Tirk vê firsendê ji dest bernede.



## Pêşengeha Hewlêrê:
# 29 welat û 750 şirket beşdar bûn

**Hewlêr (Rûdaw)** – Pêncemîn Pêşengeha Navnetewî ya Hewlêrê di rojên 12 û 15'ê cotmehê de hat lidarxistin. Ji 29 welatên cîhanê 750 şirketên cûda îsal beşdar bûn. Li gor agahiya rêveberê giştî yê fûarê ji van şirketan 300'î cara yekem e tên Kurdistanê û bi riya vê fûarê wan bi gelek şirketên biyanî re têkiliyan danîne.

Pêşengeha Navnetewî ya Hewlêrê ji sala 2005'an ve tê lidarxistin. Rêveberê Giştî yê Fûarê Ebdûllah Ehmed dibêje ku armanc fûara wan dirûstkirina têkiliyên navbera şirketên biyanî, pêşxistina berhemanînê û vejindina aboriya Herêma Kurdistanê ye. Yekemîn fûara bi vî awayî di sala 2005'an de bi beşdarbûna hêjmarek sinûrdar ya şirketên biyanî li bajarê Hewlêrê hat vekirin.

Ebdûllah Ehmed balê dikişîne ser piraniya welatên ku îsal beşdarî vê fûarê bûne û dibêje ku ew bi giraniyek mezin beşdarbûne. Ebdûllah Ehmed wek mînak Tirkiyeyê nîşan dide û dibêje ku di fûarê de cihê herî mezin girtiye û bi 95 şirketan beşdar bûye. "Herwiha li ser asta Ewrûpa ya ku berê çend şirketên kêm dihatin, îsal tenê ji Almanya 59 şirket û ji Fransa 24 şirket hatin. Çend şirketên Nemsa, Îtalî û welatên din yên Ewrûpa jî beşdar bûn."

Ebdûllah Ehmed li ser pirsa me ya ku fûara navnetewî heta ku gihaye armanca xwe, wiha axifî: "Armanca me ew bû em bibîn pira têkiliyên navbera şirketên biyanî û yên navxweyî de. Me karî em di nava van 5 salan de wan têkiliyan dirûst bikîn ku îsal li Kurdistanê bi hezaran kes bûne wekîlê şirketên derve. Bi sedema vê fûarê hêjmarek zêde ya şirketên biyanî hatin Kurdistanê û bi wê sedemê jî çendîn proje hatin holê. Ji xelkê re derfetek yê karkirinê peyda bû û di wan çend rojên ku pêşengeh berdewam de, li ti otêlên Hewlêr heta Şeqlawê odeyek jî vale nema."

Ebdûllah Ehmed di dirêjiya daxuyaniya xwe de ragihand ku mercê îsal ji bo şirketa IFP Group (grûba ku pêşengehê amadekir) ew bû ku tiştên nû bînin fûarê.

Wek Ebdûllah Ehmed dibêje di 5 salên derbasbûyî de bi sedema fûarên taybet û navnetewî 4234 şirket hatine Kurdistanê û tevlî van pêşngehan bûne: "Eger ji sedî 10'ê wan şirketan li Kurdistanê dest bi kar û berhemanînê kiribin, dike 400 şirket û ev jî destkeftiyek giring e."

Berdevkê şirketa IFP Group Fadî Ciristanî daxuyand ku ji aliyê gelek aliyên Ewrûpî ve piştgirî ji fûrarê hat dayîn.

Ciristanî di derbarê zêdebûna beşdariya şirketên Ewrûpî ya di vê fûarê de jî wiha axifî: "Herêma Kurdistanê tişta herî giring ji bo şirketên berhemanînê vediqetîne û ew jî asayîş e. Ev ji dervey hêsankirina aboriyê ye, wekî spartina sermaye, kêmiya rêjeya bac, gûmirg û jêrxaniyek ku di pêşketinê de ye."

Rêveberê îxracat û firotinê yê Şirketa Philadeliphia Emced Enaswiye di derbarê fûarê de hêvî û armancên xwe parve kir: "Me zanibû li Hewlêrê rewşa ewlehiyê aram e, ji ber vê jî me biryar da ku em beşdar bibîn. Eger ev fûar li cihek din yê Îraqê bûya, em nedihatin. Armanca me ya beşdarbûnê, ji şirketa me re dîtina wekîlekê li Kurdistan û Îraqê bû."



Pêşengeha Navnetewî ya Hewlêrê (Wêne: Rûdaw)



Mizgefta ku Doğramacı ava dike wê mezintirîn û moderntirîn mizgefta li Hewlêrê be

# Doğramacı li Hewlêrê bi 20 milyon Dolaran mizgeft ava dike

**Arî Osman**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Prof. İhsan Doğramacı piştî avakirina 6 xwendingehan, niha jî li Hewlêrê mezintirîn û moderntirîn mizgeftê ava dike. Cîgirê Doğramacı ragihand ku endezyariya mizgeftê hatiye amadekirin û li benda şaredariyê ne ku zevî ji bo wan dabîn bike.

İhsan Doğramacı ku karmednekî mezin ê Hewlêrê ye û niha li Stenbolê dijî, biryar sitendiye li ser hisabê xwe mezintirîn mizgeft li Hewlêrê dirust bike. Doğramacı ji bo vê mizgeftê 20 milyon Dolar terxan kirine. Cîgirê İhsan Doğramacı li bajarê Hewlêrê Nafi Xefaf ji bo Rûdawê wiha got: " Doğramacı biryar daye mizgeftê dirust bike, ku 20 milyon dolar liser diçin û firehiya wê 5 donim in û dixwaze bibe modêrntirîn mizgefta Hewlêrê. Me her tişt amade kiriye, endezyariya mizgeftê amade ye û em li benda şaredariyê ne ku ji bo me parçeyek zevî terxan bike da ku em dest bi kar bikin."

Berdevkê Wezareta Ewqaf Merîwan Neqşbendî ji Rûdawê re wiha axifî: "Hemû kes dikare daxwaza dirustkirina mizgeftan bike, lê me ji bo dirustkirina mizgeftan merc danîne, ger ne li gor mercên me be em destûrê nadin." Derheqê mizgefta İhsan Doğramacı jî Merîwan wiha got: "Heta niha em di derbarê dirustkirina wê mizgeftê de bi fermî nehatine agahdar kirin."

Lê Parêzgarê Hewlêrê Newzad Hadî bo Rûdawê eşker kir ku haya parêzgehê ji dirustkirina mizgeftê heye û pêde çû: "Daxwaz ji me kirin em parçeyek zevî bo wan dabîn bikin lê hê daxwaza wan li ba Komîsyona Lêkolînkirina Şaredariyê, Parêzgeh û Ewqaf e."

Herçiqasî pêwîstiya Kurdistanê bi dirustkirina xwendingeh û nexweşxaneyan hebe jî, lê xêrxwaz û sermayedarên Kurdistanê bêhtir berê xwe didin avakirina mizgeftan. Li gor nivîsnameyeke Wezareta Perwerdê niha pêwîstiya Kurdistanê bi 3016 xwendingehan heye.

Cîgirê Doğramacı Nafi Xefaf jî di derbarê pêwîstiya dibistanan de wiha axifî: "Di serdane dê me ji İhsan Doğramacı re got pêwîstiya Herêma Kurdistanê bi xwendingehan heye, wî jî biryar da şeş xwendingeh (3 seretayî û 3 amadeyî) liser hisabê xwe li Hewlêrê dirust bike, 3 ji wan temam bûne û yên din jî tên dirustkirin, di pêşerojê de jî çend xwendingehên din jê tên dirustkirin."

Li gor îstatîkên Wezareta Ewqaf li Kurdistanê 4079 mizgeft hene, 301 ji wan li navenda bajêrê Hewlêrê ne. Herwiha di dema sê salên borî de 250 mizgeftên nû hatine dirustkirin.

# Di heman rojê de du rojnameyên kurmancî dest bi weşanê kirin

**Dihok (Rûdaw)** – Li Duhokê di heman rojê de du rojnameyên kurmancî bi tîpên erebî dest bi weşanê kirin. Bi salane ku hêrêma Behdînana li benda rojnameyeke rojane bû, ne yek lê di heman rojê de du rojnameyên rojane bi hevre derketin. Rojnameyên ku bi kurmancî ne bi navên War û Evro dest bi jiyana weşanê kirin.

Ji ber ku piraniya Kurdên Bakur, Rojava û gelek Kurdên Rojhilat jî bi zaravaya kurmancî dipeyivin û bi tîpên latînî dinivîsin, lewma her çavê wan li rojnameyeke bi zarava kurmanci bû. Lê ev herdû rojnameyên rojane bi tîpên erebî ne.

Rojnamevan Hoşeng Tacir dibeje, li Behdînan derketina du rojnameyên bi zaravayê kurmancî di dîrokê de yekem care diqewime: "Diviyabû bi kêmanî rûpelek yan du rupel bi tîpên latînî bûna. Ji ber ku çavê Kurdên parçeyên din jî li vê herêmê ye."

Tacir ji Rojavayê Kurdistanê yê û wek rexnegir tê nasîn, niha di rojnameya Evro de kar dike: "Wek rojnama Evro em hewl didin ku pêşerojê her hefteyê jimareke latînî jî derbixin. Ji ber ku eger bi latînî derkevê, Kurdên bi kurmancî axêf yên parçeyên din jî wê sûd ji rojnamê wergirin."

Serperiştê Rojnameya Evro Rewan Nihêlî dibêje ew ne aligirê weşana rojane bû: "Evro nikare wê rola ku dema heftane bû dilîst, êdî bilîze. Pêwîstiya Duhokê bi du rojnameyên rojane tune ye. Rast e xwendevan wê rojnamê bixwînin, lê hebûna du rojnameyên rojane wê pirsgirêkek bo xwendevanan derxîne. Armanc ragehandina nûçeyên parêzgehê bin, yek rojname têr dike."

Ji xwînerên Evro Dilgeş Sîteyî jî wiha dibêje: "Dema Evro heftane derdiket, min hemû jimarên wê dixwend. Evro nikare gendeliyên hikûmetê û hinek berpirsan eşkere bike û bala xwendevanan bikşîne ser xwe. Lê rojnameya War wek min çend jimarên wê dîtin tenê texlîda Evro ye. Me hêviyeke mezin ji War dikir, lê mixabin wiha derneket, tenê wekî belavokeke çalakiyên hizbî û hikûmî derdikeve.

Gelek kes dibêjin ku Evro ji ber War bi lez bû rojane da ku bikaribin di dîrokê de navê xwe tomar bikin û bibin yekem rojnameya rojane li Behdînan. Lê rojnama War jî di heman rojê de derket! Sernivîskarê Evro axaftina xwe wiha didomîne: "Ji destpêka derxistina yekem jimara rojnama xwe di 31'ê tîrmaha 2003'an de me nave wê kir Evro, ji ber me dixwest wê bikin rojane, lê ji ber astengiyan, heta ku berî hilbijartinên vê dawiyê yên Parlamena Kurdistanê me hinek civîn lidarxistin ku em Evro bikin rojane lê me encam negirt. Ji ber ku agahiya me ji War nebû ku wê di heman rojê de derkeve, me biryar da ku Evro bikin rojane. Lê di heman rojê de War jî derket."



**Rûdaw**

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net · **Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de
**Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81
**Web:** www.rudaw.net · **E-maîl:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-maîl:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)



*Ji bo kabineya nû wê piraniya wezîrên niha cihê xwe ji kesên nû re vala bikin. Kabineya kevin ji 42 wezîran pêk dihat.* (Wêne: Krg.org)

## Hejmara wezaretan dadikeve 19'yan

# Kabineya nû bi wezîrên nû tê avakirin

**Newzad Mehmûd**

**Silêmanî (Rûdaw)** - Li gorî pêşniyaza Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî, ji bo her wezaretekê wê sê endam hebin da ku di dawiyê de yê herî baş ji aliyê serok û cigirê serokê kabîneya şeşemîn ve were hilbijartin. Seroka Fraksyona Kurdistanî ya Parlemena Kurdistanê dibêje, wê tenê Wezîrê Pêşmerge û yê navxweyî li cihên xwe bimînin. Berpirsê Diwana Serokatiyê, Dr. Fuad Hisên di dema destnîşankirina Serokwezîr Dr. Berhem salih û cihgirê wî û Azad Berwarî ji bo pêkanîna kabîneya şeşemîn ragihandibû ku, Mesûd Barzanî daxwaz ji wan kiriye ku ji bo her wezaretekê sê nav werin pêşniyazkirin, da ku yê herî baş hilbijêrin.

Li gorî agahdariyan, Dr. Berhem Salih di civînên xwe yên ligel PDK'ê de pêşniyar kiriye ku di kabîneya şeşemîn de YNK û PDK postên qaymeqamî û rêveberê nahiyeyan li deverên jêr deshelata hevûdû bistînin.

Ji aliyekî din ve, Cigirê Serokê Hikûmetê û Endamê Politburoya YNK'ê Îmad Ehmed kabîneya şeşemîn wê ji 19 wezaretan pêkbê: "Wezaretên ku karûbarên wan nêzîkî hevin wê bibin yek. Wek Wezareta Çandiniyê digel Wezareta Çavkaniyên Avê, Wezareta Şaredariyan li gel ya geştûguzar, ya pîşesazî li gel bazirganî. Ew wê bibin yek wezaret. Herwiha Wezareta Kar û Karûbarên Civakî û Wezareta Mafê Mirovan wê bibin dû rêvebiriyên serbixwe."

Lê çavkaniyeke nêzî Dr. Berhem Salih dibêje ku wê Wezareta Karûbarên Civakî û Wezareta Karûbarên Şehîd û Enfalkiriyan dimînin.

Wezîrê Jingehê Dara Mihemmed Emîn ji dibêje Wezareta Jingehê bibe îdareyeke bi hêz ya serbixwe: "Herçend egera wê yekê ji heye ku ev wezaret li gel Wezaretên Çandiniyê û Çavkaniyên Avê bin yek: "Li gelek welatan jingeh îdareyeke serbixwe ye û girêdayî Serokkomar e, lewma dibe ku li Herema Kurdistanê ji ew bibe îdareyeke serbixwe û desthilatên temam jê re werin dayin, ji bo çavdêrikirina jingehê û bila ew girêdayî Serokatiya Herema Kurdistanê be."

Guhertineke din ku wê di kabîneya şeşemîn de bibin, cudakirina Civata Dadwerî û Wezareta Dad û Wezareta Ewqafê ye. Berpirsê Ragihandina Wezareta Ewqafê Meriwan Neqşebendî ew zanyarî piştrast dike: "Piştî danîna Civata Dadweriyê ya ku serperiştiya hemû dadgeh û karûbarên wan dike, wê Wezareta Dadê bikeve nav Wezareta Ewqafê. Çunkî li gel cudabûna Civata Dadweriyê wê beşeke kêm ji wê wezaretê bimîne û karên wê û yên Wezareta Ewqafê nêzîkî hevin."

Seroka Fraksyona Kurdistanê Sozan Şehab di derbarê organîzekirina kabîneya nû de ji Rûdawê re ragihand ku Listeya Kurdistanî dixwaze kabîneyeke nû avabike: "Xelk ji dixwaze serûçavên nû bibînin." Şehab got wê tenê Wezîrê Pêşmerge Şêx Cafer û Wezîrê Hundir Kerîm Şingarî wê di kabîneya şeşemîn de bimînin û wezaretên din bên nûhkirin.

## Waliyê Silêmaniyê Dana Ehmed Mecîd:

# Di dema min de li Silêmaniyê 3 hezar proje hatin bicîhkirin

**Newzad Hadî / Kawe Şêx Ebdûllah**

**Rûdaw (Silêmanî)** – Ji ber koçbûna ji gundan û pêşkeftinên li Herêma Kurdistanê, pirsgirêkên niştecihbûnê, bi taybetî ji li bajaran, mezin bûne. Waliyê Silêmaniyê Dana Ehmed Mecîd bahsa rewşa parêzgeha xwe û pirsgirêkên niştecihbûnê û qalîteya ava nav bajarê xwe ji Rûdawê re kir.

Li Silêmaniyê peydakirina malên li gor pêdiviyan pirsgirêkekî mezin e. Her çendî ku hêjmarek komelgehên cihûwarbûnê hatine avakirin ji, lê kesên feqîr nikarin wan bikirin. Li ser vê yekê waliyê Silêmaniyê Dana Ehmed Mecîd dibeje ku cihûwarbûn ne tenê problema bajarê Silêmaniye ye, ew pirsgirêka hemû cihanê ye û divê hikûmet arikariyê bikin: "Hikûmeta Herêma Kurdistanê arikariya avahiyan li gel fermanberan dike. Sala derbasbûyî hikûmetê bi nirxê 100 milyon Dolar ji bo projeyên niştecihkirinê xerc kir û niha ji 100 milyonên din zêde kiriye û bûye 200 milyon Dolar."

Sala derbas bûyî şirketek bi navê "Gilî Gandera" hat Silêmaniyê û ji bo avakirina 5 hezar malan ji bo hejaran daxwaza zeviyan bi erzantirîn biha ji Walitiya Silêmaniyê kir û paşê gazina wê yekê kir ku walî ji wan re zevî neveqetandiye. Ehmed Mecîd li ser vê yeke dibeje ku zêvî zêde ne û wan zevî dane hemû şirketan: "Li wilayeta Silêmaniyê ji bo vê armancê ji bo zêdetirî 20 şirketan zevî hatine veqetandin û wan bi xwe nekarîne têde kar bikin. Ji ber vê ji biryar hatiye dayin ku zevî ji wan bên wergirtin."



*Waliyê Silêmaniyê Dane Ehmed Mecîd di hilbijartinên borî de piştevaniye xwe ji bo Lista Goran nîşan da* (Wêne: Rûdaw)

Wekî din tê gotin ku hêjmarek şirket bazirganiyê bi wan tenderan dikin ku walî didin wan û ev ji zerarê dide tevayiya projeyan. Li ser pirsa ka walî çima rê dide vê yekê, Ehmed Mecîd dibeje "Ji xwe ev ne tendere, piştî ku îhale tê kirin, diçe û difiroşe. Me ew ji qedexe kiriye û me gotiye her şirketa ku çi jêre derbikeve, divê her ew şirket bi cih bike û nikare bifiroşe û bi xwe jê berpirse." Walî wekî din bahsa karê xwe yê borî ji dike û dibeje ku tenê di çarçoveya civata wilayeta Silêmaniyê de di serdema wî de zêdetirî 3 hezar proje hatine cîbicîhkirin.

Li ser îdiayên ku ji sedî 20'ê ava vexwarinê ya Silêmaniyê pîs bûye, walî vê yekê red dike û dibeje ku ew naxwazê bê gotin ku ava Silêmaniyê pîs bûye û ava Silêmanî qet pîs ji nabe û bahsa wê yekê dike ku Silêmanî yekane bajarê Îraqê ye ku tenê ji sedî 3,67 ava xwe dermanê paqijiya avê bi kar tîne û ji sedî 97'ê bajarê Silêmaniyê xwedî kanalizasyon e û ava pîs û paqij ji ji hev cuda diherikin û tevlîhev nabe. Ehmed Mecîd herwiha got ku ava Silêmaniyê ji deryaçeya Dukan tê û ava Dukan wisan lê nayê ku nexwure. Wekî din Ehmed Mecîd ew yek ji red kir ku şirketa Nokan di avakirina ava Dukanê de boriyên xirab û kêmqalîte bi kar aniye û dibeje ku wî ev yek ji çapemeniyê bihîstiye û di belgename û raporên endezyarên wan bi xwe de wî tiştek wisan nebihîstiye ku boriyê kêmqalîte hatibin bi kar anîn.

Ehmed Mecîd bahsa pirsgirêkên di warê koordînasyonê kar ji dike û çendîn pirsgirêkên ku karkirinê zor dikin ji destnîşan dike û dibeje: "Ji ber wê yekê ku pêwîste pereyên ku digihijin wan di demeke diyarkirî de bê xerckirin, dema wan tune ku ew lêkolînan demdirêj li ser projeyên xwe bikin." Wekî din pirsgirêka zêviyan ji heye û Ehmed Mecîd wiha berdewan dike: "Eger projeyek te hebe û bixwazî jêre zeviyê veqetênî, razîkirin û tazmiatdayina xwediyê zeviyê demek û pereyek zêde dixwaze." Ehmed Mecîd wekî din bahsa pirsgirêka çavdêrikirina karan ji dike û dibeje ku problemekî mezin, qalîteyê kontrolê ye û di dawiyê de dibeje: "Her welatiyek, eger gazindek wî li ser projeyên civata Parêzgeha Silêmaniyê hebe, mafê wî ye ku gazindan jê bikin."

## Bayram Bozyel:

# Bo selameta pêvajoyê divê partiyên Kurd bi hevre tevgerin

İsmet Siverekli

**Berlin (Rûdaw)** - Yekîtiya Komeleyên Kurdistanê-KOMKAR, wê di navbera 16'ê Cotmeh û 28'ê Mijdarê de li ser rêlêvebûna pirsgirêka Kurd rêzekonferansan lidarxe. Ji van konferansan a yekemîn, di 16'ê Cotmehê de, ji aliyê KOMKAR'ê şaxê Komeleya Çand û Alîkarî ya Kurdistanê ve li Berlînê pêkhat.

Serokê Giştiyê Partiya Maf û Azadiyan (HAK-PAR) Bayram Bozyel, wek axaftvan bêşdarî konferansê bû. Bozyel daxuyaniyek taybet da rojnameya me Rûdawê û got; "Ez li ser navê partiya me, bo ku diyaspora Kurd ya li Ewrûpayê di derheqê rêlêvebûna pirsgirêka Kurd de agahdar bikim, tevlî rêzekonferansan dibim."

Bozyel, diyar kir ku ev rêzekonferans ji aliyê KOMKAR'ê ve hatiye organîzekirin û wê li deverên cuda yên Ewrûpa berdewam bikin. Bozyel, bibîrxist ku beriya konferansa Berlînê, wî bi temsîldarên partiyên Alman wek Keskan û partiya Çep re hevdîtin lidarxistine.

Bozyel'ê ku bi Hevserokê Partiya Keskan Cem Özdemir re hevdîtin pêkanî, da zanîn ku di derbarê pirsgirêka Kurd û pêşveçûnên dawî de ew agahdar kiriye û nêrînên partiya xwe pêşkêşî wî kiriye.

Bozyel, da zanîn ku Özdemir wek hevserokê partiya xwe piştgirî daye rêlêvebûna Kurd û wê bi HAK-PAR'ê re herdem di nava danûstandinan de bin. Bozyel, di berdewamiya axaftina xwe de diyar kir ku, fikr û nêrînên partiyên Alman ên li ser pêvajoya rêlêvebûnê pir kêm in û ji ber vê yekê, wê meha ku li Ewrûpayê be, wê van partiyan agahdar bike.

Bozyel, li ser pêvajoya rêlêvebûna Kurd ya li Tirkiyê wiha axifî: "Li Tirkiyeyê hem li cem Kurdan û hem jî li cem Tirkan, di mêjî de şêlobûnek heye. Ji bo ku ev yek ji hole rabe, divê hem planek Kurdan û hem jî yê hikûmetê hebe. Planê partiya me heye. Partiya me, di pêşerojê de li Tirkiyeyê sistemek federal diparêze. Dewleta Tirk jî, divê di gava yekem de makezagona xwe biguherîne, rêveberiyên herêmî xurttir bike û nasnameyên Kurdan yên siyasî û çandî bipejirîne."

Bozyel, herwiha da zanîn ku Wezîrê Karên Hundir ê Tirk Beşir Atalay, li ser dilovaniya Serokên wan ê rûmetê A. Melik Fırat, li wî geriyaye û sersaxî ji wan xwestiye. Herwiha, ji Bozyel xwestiye ku di demek nêzîk de, li ser rêlêvebûna Kurd dixwaze serî li fikrên partiya wan bide.

Bozyel, daxuyakirin ku dewleta Tirk, wê di demek nêz de li parlamena xwe li ser rêlêvebûna Kurd niqaş bike û stratejiya xwe eşkere bike. Bozyel dibêje ku, heger niyetek wan a çareserkirinê hebe, divê bi awayekî DTP û PKK'ê li ber çav bigrin û daxilî pêvajoyê bikin. Bozyel, di berdewamiya axaftina xwe de dibêje, eger dewlet vê yekê neke wê bisernekeve.

Bozyel, herwiha vê yekê jî li axaftina xwe zêde dike û dibêje: "Li Tirkiyeyê 3 partiyên fermî yên Kurdan hene. HAK-PAR, KA-DEP û DTP. Divê ji ber zelaliya daxwazên Kurdan ev her sê partî di nava xwe de hemfikir bin."


Serokê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel (Wêne: Rûdaw)

Bozyel, di daxuyaniya xwe de li ser siyaseta AKP-ê ya li hember pirsgirêka Kurd jî sekinî û wiha got: "Di dîroka Komara Tirkiyê de ev cara yekem e ku partiyek Tirk ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd meyildar xuya dike. Ji bo ku ev pêvajo vala dernekeve, divê hemû Kurd û Tirk piştgirî bidin vê pêvajoyê. Dibe ku di vê pêvajoyê de hin kes astengiyan derxînin, serî li provokasyonan bidin, lê li xwedîderketina pêvajoya mirov dikare van pirsgirêkan berteref bike." Bozyel, wê di vê serdana ku mehek bidome de, ji bo têkoşîna gelê Kurd piştgirî bixwaze û wê bang li wan bike ku, li ser hikûmeta Tirkiyeyê tesîrek erênî çêbikin. Bozyel, wê di van deman de li van bajaran konferansan bide: 18'ê Cotmehê li Bottrop, 24'ê Cotmehê li Hamburg, 25'ê Cotmehê li Den-Hang, 31'ê Cotmehê li München, 1'ê Mijdarê li Duisburg, 7'ê Mijdarê Stockholm û 28'ê Mijdarê li Londra.

**'Rûdaw ji bo xwendevanên Kurd yên diyasporayê şanseke mezin e'**

Bozyel, rojnameya me Rûdawê ji bo xwendevanên Kurd ên diyasporayê wek şanseke mezin nirxand û ji bo rojnameya me serkeftin xwest. Bozyel, herwiha diyar kir ku derketina rojnameyek bi zimanê zikmakî li diyasporayê pêşveçûnek şanaz e. Bozyel, di pêşeroj de li ser rola Rûdawê jî sekinî û wiha got: "Kurdên diyasporayê ji bilî zimanên biyanî, wê bi zimanên xwe jî, ji Kurdistan û ji cîhanê agahdar bibin. Partiya me HAK-PAR, ji bo piştevaniya Rûdawê herdem amade ye."




## Navenda Çanda Çira:

# Bikaranîna zimanê kurdî prensîba me ye

**Amed (Rûdaw)** - Navenda Çanda Çira berî çar salan li Amedê hatiye avakirin. Heta niha li ser ziman, çand û hunera kurdî bi dehan konser, seminer, panel, guftugo û konferans organîze kirine. Di van çalakiyan de bi dehan nivîskar û hunermend tevlî bûne. Herwiha gelek caran ji atolyeyên zimanê kurdî vekirine û bi sedan kes beşdarî van xebatên wan bûne. Serokê Navenda Çanda Çirayê Eşref Çakan ji Rûdawê re axivî û behsa kar û barê xwe kir.



Serokê Navenda Çanda Çirayê Eşref Çakan

*Bi çi armancî we Navenda Çanda Çirayê avakir?*

Li Amedê di derbarê çand û hunera kurdî me kêmasî û hewcedariyên mezin dît, his kir û ji ber vê yekê me komeleyê ava kir. Ji polîtîkayên asîmîlasyonê û ji çanda populer ya ku ciwanên Kurdan ber bi tunebûnê ve dibirin gazincên me hebûn. Şerê qirêj yê nêzîkî 25 sal e ku li welatê me dihat kirin jî bandoreke neyênî li ser psîkolojiya ciwanên Kurd dikir. Avabûna komeleya ÇIRA'yê li hember çanda populer û polîtîkayên asîmîlasyonê helwêsta nerazîbûnê ye. Me ji bo ciwan û zarokan qursên gîtar, tembûr, ebrû, wênesazî, kemanê vekir. Xebatên me hê jî di çarçoweya karûbarên hunerî de didomin. Em dixwazin zimanê kurdî di jiyana rojane, di xebatên çand û hunerê de bikin zimanê sereke.

*Dilê hemû Kurdan li Amedê ye, lê gelek Kurd rexne dikin ku çand û zimanê tirkî li Amedê serdest e, hûn vê yekê çawa dinirxînin?*

Ev birîneke xedar e, şermezariyeke mezin e ji bo Amedê. Kêmasiya me ya herî mezin e. Ji xwe sedemeke avakirina komeyela me jî ev yek bû. Li kuçe, kolan, dibistan, kargeh, çarşî bi kurtahî hema bibêje li her derê Amedê tirkî bûye zimanê serdest. Belê gelek sedemên dîrokî, civakî û siyasî yên vê yekê hene. Di encama salên dûr û dirêj de ev rewş çêbûye. Ji ber vê yekê ji ne mumkun e ku di nav demeke kurt de zimanê kurdî li Amedê bibe zimanê sereke.

*Ji bo ku ziman û çanda kurdî li Amedê deng bide û popûler bibe jê re çi lazim e?*

Divê mirov bêyî ku hêviya xwe bişkêne hewlbide. Beriya her tiştî divê mirov ji malbata xwe dest pê bike. Bi dê û bavên xwe re, bi zarokên xwe re, bi xizm û nasên xwe re bi kurdî biaxife. Li kuçe û kolanan, li her derê, bikaranîna kurdî ji xwe re bike wek kurm. Kurmanc bi kurmancî, zaza bi zazakî da ku mêjî û bîra me bi kurdî bixebite. Ger mêjî û bîra mirov bi kurdî bixebite wê demê em ê bikaribin bi zimanê xwe helbestan, çîrokan, romanan binivsînin. Em helbestên xwe bi kurdî binivsînin wê demê ziman jî wê pêş bikeve û xurt bibe.

*Gelo li dijî çand û hunera serdestan hûn difikirin çi bikin?*

Me bikaranîna zimanê kurdî ji xwe re kiriye wek prensîp. Ji avabûna komeleya me heta îro, kargehên zimanê kurdî (kurmancî) xebatên me yên sereke bûne. Gelek şagirt beşdarî van kargehan bûne û fêrî zimanê xwe bûne. Herwiha em difikirin di pêşerojê de ji bo zazakî jî kargehan pêk bînin. Ji bo lêkolîn û pêşdebirina çand û hunera kurdî me hin komîsyon ava kirine. Wek mînak, komîsyona dîrokê, komîsyona ziman û wêjeya kurdî, komîsyona sînemayê, komîsyona xwendekarên liseyê û hwd. Em dixwazin di hemû xebatên xwe de bi giranî, kurdî bi kar bînin. Helwêst û hewldaneke me ya bi vî rengî heye.

*Lê li hêla din jî gelek kes rexne dikin ku hin saziyên kurd jî xwe asîmîle dikin. Li dijî xweasîmîlasyonê çi planên we hene?*

Rastiyeke mezin di vê rexneyê de heye. Lewre îro siyasetmedarên Kurd bi piranî zimanê tirkî bi kar tînin. Li gelek saziyên Kurd, tirkî zimanê dan û stendinê ye. Mixabin siyaseta kurdî bi zimanê tirkî tê meşandin. Em di wê baweriyê de ne ku gelek siyasetmedarên Kurd baş serwextê têkoşînê nebûne.

*Eger turîstek bixwaze fêr bibe ka Amed di hêla çand û hunera kurdî de bi çi ve navdar e, tu yê jê re çi bibêjî?*

Beriya her tiştî Amed bajarekî kevn û dîrokî ye. Bi sûr û bircên xwe, bi dêr û mizgeftên xwe, bi kuçe û taxên xwe…Li Amedê bi dehan nivîskar, helbestvan, siyasetmedar û akademîsyen jî dayikbûne, li vir xwendine û li vir berheman dane. Hem ji wêjeya kurdî hem jî ji ya tirkî re xizmetên mezin kirine. Wekî din xwarinên Amedê bi tam û lezetên navdar in. Ava sûsê li Amedê navdar e. Bi kurtahî mirov dikare ji turîstên ku riya wan bi Amedê bikeve re behsa gelek dewlemendiyên Amedê bike.

*Rexneya herî mezin ew e ku dibêjin, Navendên Çandî ên Kurdan dersên xwe bi tirkî didin? Fikra we li ser vê çi ye?*

Em di vî warî de ne wek duh û pêr in. Her çiqas hemû xebatên me kurdî nehên meşandin jî gelek xebatên me bi kurdî tên kirin. Armanca me ya sereke ew e ku di demeke dûr û dirêj de em hemû xebatên xwe bi kurdî bimeşînin.

*Banga we li nivîskar û hunermendên Kurd çi ye bo çand û hunera kurdî?*

Daxwaza me ji wan ew e divê zimaneke fesîh û hêsan bikarbînin da ku xortên Kurd ji berhemên wan îstifade bikin û di heman demê de bi saya berhemên wan ji kurdî hez bikin, kurdî fêr bibin

*Plan û projeyên we yên pêşerojê çi ne?*

Wek tê zanîn bi salan zimanê kurdî qedexe bû û ev qedexe hê jî bi temamî ji holê ranebûye. Ji ber vê yekê di warê nivîsê de kurdî zêde nehat bikaranîn. Digel vê yekê wêjeya devkî xurt bû. Armanceke me ew e ku em arşîveke çand û hunera kurdî ava bikin. Em dixwazin çîrok, metelok, qeside, tiştonek, zûgotinek bi kurtahî arşîva wêjeya devkî bi awayeke nivîskî ava bikin. Di pêşerojê de em dixwazin di warê sînemayê de, çîrok û romana kurdî de kargehan vebikin, xebatan bikin û berheman biafirînin.

# 160 gundên Hesekê vala bûne

**Besam Mistefa**

**Rûdaw (Hewlêr)** – Kurdên Rojava ku ji aliyê desthilatdariya Sûriyê rastî her rengê zext û zorê tên, mecbûrê koçkirina ji cih û warên xwe dibin û li derdorên bajarên Sûriyeyê rastî astengiyên jiyanê tên. Bi valabûna gundan ji di nava koçberên Kurd de pirsgirêkên cuda belav dibin.

Li gor hinek raporan ji 3 milyon Kurdên li Sûriyê nêzîkê 1 milyona wan li Şam û derdora wê dijîn.

Li gor agahiyên ku gihiştine Rûdawê xelkên parêzgeha Hesekê 160 gund bicihiştine di kampên li derdora Şam, Heleb û bajarên din ên mezin dijîn. Yek ji sedemên koçberiya daniştvanên parêzgeha Hesekê hişkesalî û nehatina baranê ye. Sala 2007 û 2008'an pêla zuhayî û hişkiyê derbeyek mezin li navçeyên çandinî û gundên seranserê Sûriyê xist, nemaze navçeyên Kurdnişîn.

Li gor raporên navdewletî 160 gund li bakur-rojhilatê Sûriyê ji daniştvanên xwe vala mane.

Endamê Lijneya Siyasî ya Partiya Yekîtiya Demokrat a Kurd li Sûriyê Mehmûd Mihemed bahsa koçkirina Kurdan a vê dawiyê bo metropolên Sûriyê dike û wiha dibêje: "Gelê me neçar dimîne here derdorên bajarên Sûriyê yên mezin, nemaze van salên dawî. Cizîr ji xelkê tê valakirin. Bêguman em nizanin hejmara wan çiqas e, ji ber rêjîm nahêle ti kes îstatîstîkan çê bike, lê diyar e niha li Şam, Heleb, Hums, Hema û heta Dêra Zorê jî taxên tevahî yên Kurdan çê bûne û di konan de di rewşên herî xirab de dijîn."

Mehmûd Mihemed helwesta tevgera Kurdî li Sûriyê jî rexne kir û got: "Tevgera Kurdî xemsar e û ti helwesteke erênî di vî warî de nîşan nedaye. Jiyana koçberan pir dijwar e û karên herî erzan û ne baş dikin, wek boyaxtî, karên rojane û xizmetkariya nav malan. Tevgera Kurdî bê deng e li beramberî rewşa zehmet a koçberan ku roj bi roj perîşan, tazî û bêkar dibin. Divê tevger bixebite û bi kêmanî raya giştî ya cîhanê û saziyên navdewletî bi pirsgirêka koçberan agahdar bike."

Piraniya koçberên Hesekê li derdora Şamê di kampan de dijîn. Gelek ji wan li baxçeyên xût a Şamê û navçeya Dûma dimînin.

Li gor agahiyan li derdora Şamê û gundên wê nêzîkê 100 hezar hemwelatî dijîn, bi taybetî li navçeya Dûma. Her malbatek di konekî de dijî û zarokên malbatan di baxçeyan de bi nirxên pir erzan ji neçarî kar dikin. Hikûmeta Sûriyê bi hinceta ku ew pereyên elektrîkê nadin, elektrîkê nade penaberan û wan mecbûrî jiyanek neyasayî dikin. Di wan kampên penaberan de Kurd rastî gelek pirsgirêkên civakî jî tên û kamp dibin wargehên amade ji bo derketina hemû corên nexweşî û pirsgirêkên civakî.

Yek ji van pirsgirêkan destdirêjiyên ser jin û keçên penaberan e. Keç û jinên ku di zevî û baxçeyan de kar dikin rastî destdirêjiya cotkar û xwediyên zeviyan tên û ev yêk gelek caran dibe destpêka karkirina wan keçên ku rastî destdirêjiyan tên di warê laşfiroşiyê de.

Koçberên Kurd ji ber nebûna derfetên din mecbûrin her coreyê kar bikin û vî jî bi nirxekî gelekî kêm û evyek jî dibê sedema têkçûna bazara kar li wan deran. Di vî warî de biryareke din ku jiyana penaberên Kurd li metropolên Sûriyê hîn girantir dike, hat dayîn. Hêzên ewlekariya Sûriyeyê karsaz û xwediyên restorant, dikan û fabrikeyan agahdar kirin ku ti kesê bê nasname li ba xwe nexebitînin û eger bixebitînin wê bo şeş mehan bên desteserkirin û bi nêzîkê 100 hezar lîreyên Sûriyeyê bên ceza kirin.



*Kurdên ku ji gundên xwe koç dikin li derdorên bajarên mezin di konan de dijîn*

## Rojhilatê Kurdistanê:

# Ji tirsa penaberiyê dibin cerdevan

**Sabîr Qadirî**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Wek Bakurê Kurdistanê li Rojhilatê Kurdistanê jî bi salan e cerdevanî heye. Komara Îslamî ya Îranê ji destpêka damezrandina xwe heta îro li dijî hêzên Kurd di bin navê Pêşmergeyê Musulmanên Kurd de bi hezaran kes xistiye bin çekan. Di nava van cerdevanan de kesên ku berê li dijî Komara Îslamî çek hilgirtine jî hene. Li aliyê din cerdevanî di civaka Kurd ya Rojhilat de dibe sedemên buyerên trajîk û perçebûna komelgehê.

Li Rojhilatê Kurdistanê despêka çek hilgirtinê ya ji bo Komara Îslamî ji aliyê endamên Mekteba Qûr-anî ya girêdayî Ehmedî Mûftî Zade û grûba Şems despêkir. Baweriya wan bi Hikûmeta Îslamî hebû û di heman demê de jî dijminê partiyên Rojhilatê Kurdisanê bûn. Ev kar jî bi alîkariya Mihemed Birûcirdî hat encamdayîn û ev kes yek ji serleşkerên wê demê yê artêşa pastaran bû.

"Ez ne xwefiroş im û baweriya min bi birakûjiyê nîne. Lê rewşê wisa kir ku ez ji rejîmekê re çekê hilgirim ku min berî li himberî wan çek hilgirtibû." S.K berê çekdarê Partiya Demokrata Kurdistana Îranê bû û zêdetirî 20 salan e çeka cerdevaniyê ji Îranê wergirtiye û daniye ser milê xwe. Ew sedemê cerdevaniyê ji Rûdawê re eşkire dike û dibêje: "Tirsa penaberbûna mal û zarokan wisa li min dike ku ez serşorê hikûmetê bim. Ji ber me rojekê li himberî wê hikûmetê çek hilgirtiye û ew jî niha zextan li me dikin."

Dijberikirina partiyên Rojhilatê Kurdistanê li gel şêx, mela û axayan wisa kir ji bo parastina berjewendiyên şexsî ji Komara Îslamî re çekan hilgirin û bibin cerdevan. Endamê Komîteya Navendî ya Partiya Demokrat Mihemed Kesrayî tevgera partiyan ya beramberî çekdarên Kurd ên girêdayî Komara Îslamî bi tevgerek bi karîn (şiyaw) dibîne: "Heta ku em dikarin siyasetek nerm li hember van kesan digrin. Lê di hinek aliyan de em neçarin carna kiryarên dijber nîşan bidin."

H. Q heta berî çend salan bi maddeyên bêhişker ve mijûl bûye, ew tevlîbûna hêzên Besicê wek rizgarbûna jî van maddeyên dizane. Ji ber vê jî ji bo rêzgirtina wan kesên ku alîkarî danê, diçe nav rêzên Besican: "Birayên Besic alîkariya min kirin heta ez xwe ji wê nexweşiyê rizgar bikim. Ji ber vê jî min ji bo rêzgirtina wan, daxwaza wan pejîrand û ez çûm nava rêzên Besicê. Maaşek baş didin min û ez şanaziyê pê dikim ku di xizmeta wan de me." Dema ji wî ciwanî tê pirsîn ka çima ji gelê xwe re bi rêya çek hilgirtina ji bo partiyek ya Rojhilatê Kurdistanê xizmetê nakî; ew di bersivê de dibêje: "Îsa li dînê xwe û Mûsa jî bi dînê xwe."

Endamê Komîteya Navendî ya Komeleya Zehmetkêşanî Kurdistan Aram Mûderisî jî ji siyaseta partiyên Kurd gazinc dike: "Min jî partiyên Kurd siyasetek vekirî ya derbarê kirêgirtî û kesên hatin xapandin de heta niha neditiye. Pêwîst e em jî wan kesên di berjewendiyên tevgera Kurdan de ne sûd werbigrin. Lê destê wan bi xwîna lawên wan sor e û ev mijarek din e."

**Ji fediya bavê cerdevan xwe kuşt**

Cerdevaniya li Rojhilatê Kurdistanê di nava gel de dibe sedemê bûyerên xwekuştinê jî. Meryemê 18. bihara jiyana xwe nedît û agir berda bedena xwe. Sedemê xwekuştina wê ne tenê civakî ye, herwiha siyasî ye jî. Meryem Ehmed Kiwêxa Ebdûllah ji gundê Sêwetali yê girêdayî bajarokê Serdeşt yê Rojhilatê Kurdistanê ye. Wê berî Cejna Remezanê bi du rojan agir berda bedana xwe û jiyana xwe ji dest da. Çavkaniyek agahdar sedema xwe şewitandina wê ji Rûdawê wiha parve kir: "Bavê wê cerdevan bû. Ji ber henekên devê gundiyan Meryemê agir berda xwe û piştî xwe şewitandinê bi du rojan li nexweşxaneya bajarê Ûrmiyê jiyana xwe ji dest da. Xelkê çend caran daxwaz ji bavê Meryemê kiribûn da ku dev ji cerdevantiyê berde, lê ew guh neda kesî. Meryemê jî wek nerazîbûna beramberî bavê xwe, xwe şewitand û bû qûrbanê çeka cerdevantiya bavê xwe."



*Cerdevanên kurd yên Komara Îslamî*

(Wêne: Irna)

# "Öcalan dixwaze rêya çekdanîne veke"

**Köln (Rûdaw)** - Siyasetmedarên ku ji Rûdawê re hatina koman nirxandin destnişankirin ku piştî gava Kurdan, dora dewleta Tirk e.



**Sırrı Sakık** *(Parlementerê DTP'ê yê Muşê)*: Em niha ji bo pêsbaziya komê bi Hevserokê partiya xwe di rê de ne û ber bi Silopiyê ve diçin. Em hêvî dikin ku hatina van koman ji bo aştiyê wê bibe bingeh. Tirkiye di van deh salên dawîn de gelek wext winda kir, gelek enerjî winda kir. Divê ev pêvajo dubare nebe. Bawer nakim ku aqibeta hate serê komên deh sal berê were serê van koman jî. Xêra vê yekê ji ti kesî re tune. Ji hêla hikûmetê ve halê hazir helwestek tûnd nehatiye û hêvî dikim ku neyê jî. Em ji kesên ku di vê pêvajoyê de cih digrin spas dikin.

**Orhan Miroğlu** *(Nivîskarê Tarafê)*: PKK û serokê wê Öcalan nişan didin ku di pêvajoyê de xwediyê roleke giring in. Dixwazin bi vê riyê li pêşiya rayagiştî pevajoyê biceribînin. Herwiha ez bawer dikim ku li gor nêzikayiya li hemberî van koman wê helwest nişan bidin; mînak dema ku bi dostane werin pêşwazîkirin wê riya komên mezin û hemû çekdaran vebe. Serokwezîr daxuyakirin ku kesên ne sûcdar wê neyên darizandin û eger burokrasiya dewletê ya li herêmê tevlîhevî çêneke bawer nakim ku ti kesî bixin zindanê. Şert û mercên îro ne wek sala 1999'an in, ew sal Kurdan fikirî ku dewlet ji aştiyê re amade ye, lê ne wisa bû. Iro hem li hundir, hem li derve sert aştiyê tînin pêşiya Tirkiyeyê. Lê wê Kurd ji vê aştiyê çiqas razîbin, ew meseleyeke din e.



**Prof. Doğu Ergil:** Banga Öcalan zêde giring e; ji ber ku proseya 'Vebuna Kurd' di rojeva Tirkiyeyê de ye. Partiyên siyasî yên Tirkiyê piştivaniya proseya navborî nekirin, lê Öcalan bi vê pêngavê piştgiriya xwe ji bo prose ragihand. Xaleke din a giring di bangewaziya Öcalan de, ew e ku bi vê gave dixwaze rê li pêşiya çekdanîna PKK'ê veke da ku bibe partiyeke siyasî ya dûr ji çekan. Ji bo çareserkirina pirsgirêkê û cihgirkirina aştiyê li Tirkiyeyê ev gava herî giring e, herwiha vegera wan gruban helwesta hêzên ewlekariya Tirkiyê eşkere dike.



**Ahmet Türk** *(Hevserokê DTP'ê)*: Vê hewldanê hêviyên ji bo çareseriyê zêde kiriye. Em helwesta ku dewlet wê nişan bide, mereq dikin. Berê ji du komên aştiyê hatibûn Tirkiyeyê, eger komên nû bi heman awayî bên cezakirin wê Tirkiye winda bike. PKK bi şandina 3 komên aştiyê nişan dide ku biratiya gelan çiqas dihesibîne. Nabe ku ev fersend neyê bikaranîn. PKK ji bêhêziya xwe van gavan navêje. Ji ber samimiyeta xwe ya li hemberî vê pêvajoyê van gavan diavêje. Eger dewlet bêje, 'wan iro ev kom şandin, sibê wê belav bibin' wê bikeve xeletiyeke mezin. Bi avêtina vê gavê divê bibînin ku têkoşîna gelê Kurd geş bûye û pêvajoyê baş dinirxîne.

**Ufuk Uras** *(Parlementerê Serbixwe)*: Ji 3 milan de komên aşitiyê tên. Ger ku niyeta hikûmetê ya aşitiyê hebe divê vê firsetê baş bikar bîne. Ez hêvîdarim ku vê hewildanê baş binirxînin. Lê mixabin, ez li axaftinên Serokwezîr Erdoğan guhdar dikim vê heviyê nabînim. Barê herî giran dikeve ser hikûmetê.



**Ayla Akat Ata** *(Parlementera DTP'ê ya Êlihê)*: Tirkiye ket pêvajoya biryarek nû. Bi hatina komên aştiyê reng û helwesta hikûmet û dewletê wê zelaltir bibe. Ji bo Tirkiye ev pêvajoyek nû ye. Ger hikûmet samîmî û bi niyeta baş nêzîk bibe wê gavên erênî bavêje. Eger hikûmet vê pêvajoyê baş nenirxîne û komên bêne Tirkiyeyê bişîne girtigehê wê rojên xirab dest pê bikin.

## Peymana hevkariyê:
# Yekîtiya Ewrûpa, Suriyê nêzîkî xwe dike

**Sirwan H. Berko**

**Berlin (Rûdaw)** - Piştî salên dirêj ji bir û anînê Yekîtiya Ewrûpa (YE) dixwaze dawiya vê mehê bi Suriyê re peymaneke hevkariyê (Association Agreement) imze bike. Dewletên YE'vê dawiyê li ser vê yekê li hev kirin. Ev peyman gerek bû di sala 2005'an de hatiba imzekirin. Lê ew piştî kuştina kevneserokwezîrê Libnanê Ref'iq el-Herîrî di 14'ê sibata 2005'an de hate rawestandin. Bi taybetî vetoya Hollandayê bû ku ta niha dibû sedem ku ev peyman neyê imzekirin. Hollanda ji rewşa mafên mirovan li Suriyê dikir sedema nepejirandina pêkanîna vê peymanê. Lê piştî dextên berdewam li ser Hollandayê dewletên din ên Yekîtiya Ewrûpayê, bi taybetî jî Fransa, Almanya û Swêdê, ew razî kir û erêkirina wê ji bo imzekirinê bi dest xist.



*Serokdewletê Suriyê Hafiz Esad bi Serokdewletê Fransayê Sarkozy re*

**Çi hate guhertin?**

Rewşa mafên mirovan li Suriyê nehatiye guhertin. Berevajî, ew di salên dawî de xerabtir bûye. Girtina çalakvanên mafên mirovan û çewisandina welatiyên surî, bi taybetî jî gelê Kurd li Suriyê, her ku diçe zêdetir dibe. YE li ser vê rewşê baş agahdar e.

Komisyona Ewrûpî eşkere dike ku bi imzekirina peymanê ew hevkariya avaker a Suriyê dipejirîne. Li gor agahiyên ku Rûdawê ji çavkaniyên pêbawer di YE'ê de bi dest xistin, ev daxuyaniya hundirîn, ku - berevajî peymana hevkariyê belgeyeke sirrî ye, Suriyê mecbûrî tiştekî nake, çimkî ew di warê qanûnî de ne daxuyaniyeke fermî ye. Çavkaniya Rûdawê, ku nexwest navê wê bê eşkerekirin, berdewam kir û got: Me berî niha ev daxuyanî derbasî peymanên bi welatên wek Tunis û Misrê jî kiriye. Lê rewşa mafên mirovan li herdu dewletan gelek xerab e. Tevî vê yekê jî ta niha me peymana hevkariyê ya bi van welatan re ranewestandiye. Bi kurtî: Ev daxuyanî nikare ti dextê li ser Suriyê pêk bîne, ew bêtir belgeyeke ku agahiyên naskirî hembêz dike.

Ta niha Yekîtiya Ewrûpa peymanên hevkariyê bi hemû dewletên li ser Deryaya Spî imze kiriye, tenê Suriye maye. Bi van peymanan YE di warên siyasî, aborî, çandî, civaka sivîl û yên din de hevkariyeke xurt bi van dewletan re pêk tîne. Ji bo vekirina bazarên xwe ji dewletên wê re YE bi projeyên mezin alîkariya van dewletan dide. Almanya yek ji wan dewletan e ku bi salan hewildanên xurt dike ku peymana bi Suriyê re bê imzekirin. Çavkaniyeke pêbawer di hikumeta Alman de ji Rûdawê re diyar kir, ku Almanya gelekî dixwaze welatên li Rojhilata Navîn û bi taybetî yên Deryaya Spî bêtir bi YE ve girêbide, da ku bandora li ser van dewletan xurtir bibe. Dewleteke mîna Suriyê ta niha rê nedida dewletên mîna Almanyayê ku tedexulî pirsên mîna mafê mirovan bibe. Gelek caran dewletên YE'ê ji Suriyê xwestiye ku pê re li ser van pirsan biaxive, lê rêjîma Suriyê jî wan re gotiye na! Piştî imzekirina peymana hevkariyê û sazkirina komên xebatê di warên cuda de di nav de ji komeke xebatê ji bo pirsên siyasî wê derfetên baş ji bo me çêbibin ku em binpêkirina mafên mirovan û çewisandina welatiyên Kurd li Suriyê yekser bi nûnerên Suriyê re bînin zimên.

Tevî vê rastiyê jî ji bo YE hebûna peymaneke fermî bi Suriyê re ji nebûna wê çêtir e. Swêd jî, ku ta dawiya vê salê serokatiya Encumena YE'ê dike, di heman baweriyê de ye û ji ber vê yekê gelek hewildan pêk anîne ku peymana bi Suriyê re bê imzekirin. Çavkaniyeke ji hikumeta Swêdê ji bo Rûdawê diyar kir ku ev peyman wê ji bo hemû welatiyên Suriyê bi sûd be. Hêviya me ew e ku em di rêya vê peymanê re bigihên wê rewşê ku hikumeta Suriyê siyaseta xwe ya hundirîn biguherîne û deriyê azadiyan ji welatiyên xwe re veke.

Yekîtiya Ewrûpa bi hemî hêza xwe dixwaze Suriyê bi aliyê xwe ve bîne. Ew naxwaze ku Surî berê xwe bide Îranê û ji cihanê re astengan çêke. Ewrûpî di wê baweriyê ne ku ger ew Surî wek hevkar qezenc bikin, ewê bikaribin gelek kêşeyên Rojhilata Navîn çareser bikin. Lê berî hertiştî berjewendiyên wê jê re giringtir in. Vekirina bazarên dewletên Rojhilata Navîn ji şirketên ewrûpî re serfetîne nû peyda dikin û ev yek rola ewrûpayê di pêşbaziya cîhanî de xurtir dike.

# Li dijî gendeliyê alîkariya navnetewî

**Selam Sedî**

**Rûdaw (Hewlêr)** – Hikûmeta Herêma Kurdistanê li dijî gendeliyê hewldanên xwe didomîne. Bi vê armancê Hikûmeta Herêmê li gel şirketa PWC ku di warê nehiştina gendeliyê de şêwirmendiya saziyên navdewletî dike, ket nav pêwendiyan û PWC wê di demeke nêzîk de ofiseke li bajêrê Hewlêrê veke.

Hikûmeta Herêmê ji bo nehiştina gendeliyê di dawiya 2008'an de li gel şirketa PWC têkilî danîn û ji bo rêvebiriyê komisyonek ava kir. Şêwirmendê Serokê Hikûmeta Herêma Kurdistanê û serokê wê komisyonê Nesar Talaban di derbarê bijartina şirketa PWC bo çareserkirina pirsgirêka gendeliyê li Kurdistanê agahî dan Rûdawê û da zanîn ku şirketa navborî di nav wan de Kongres a Amerîkî jî, şêwirmendiya hikûmetan dike û di derheqê welatên Rojhilata Navîn de pisporiyeke wan a zêde heye û berê li Kûweyt û Ürdunê kar kirine û peywendiyên PWC ên yekser li gel Bankaya Cîhanê û Netewên Yekgirtî jî hene.

PWC piştî lêkolînên li ser asta gendeliyê li Herêma Kurdistanê di gulana borî de raporek pêşkeşî Serokatiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê kir û Talabanî dibêje ku encamên lekolîna şirketê stratejiya wan a li dijî gendeliyê diyar kiriye: " Divê em xelkê hişyar bikin ku gendelî ne tenê di nava hikûmetê de ye, lê belê gendelî nexweşiyek e û divê bê çareserkirin." Navborî şêwaza Îraqê ji bo nehiştina gendeliyê wek şêwazeke xelet dide zanîn û pêde diçe: " Ew herdem êriş dikin ser filan wezîr yan bêvan berpirs û wan bi gendeliyê tewanbar dikin. Gelek caran berpirs direve derveyê Îraqê, yan demekê tê zindankirin û piştre tê berdan, an jî mesele dibe meseleyeke siyasî. Bi baweriya me gendelî bi vî awayî nayê çareserkirin."

Talabanî di derbarê şert û mercên Kurdistanê de ji wiha axif: " Bi rastî jî ispatkirina gendeliyê kareki zehmet e, divê ev nexweşî ji kokê bê çareserkirin. Hikûmet tenê nikare vê çareser bike, lê divê hemû alî hevkariya hevdu bikin." Talabanî di derbarê axaftinên xelkê yên di derheqê dizî û gendeliya berpirsan jî wiha got: " Îspatkirinê gendelî gelekî zehmet e. Kurd wek miletekî destpak û dilpak tê naskirin, lê herdem piştî şeran pirsgirêkên wek gendeliyê di nav hemû gelan de derdikevin. Sedemekî din ê belavbûna gendeliyê nezanî û kêmbûna hişyariyê ye û gelek kes bê zanebûn gendeliyê dikin."

# "Hejmara nivîskaran ji xwendevanan zêdetir e!"

**Amed (Rûdaw)** - Kawa Nemir bi salan editoriya kovarên Jiyana Rewşen û Rewşen-Nameyê kiriye, yek ji editorên Weşanxaneya Lisê ye û editorê rêza Wêjeya Cihanê û Romana Kurdî ye. Ji ingilîzî û tirkî gelek pirtûk wergerandiye kurdî, 3 jê dîwanên wî bi xwe, 7 jê ji werger, 10 berhemên wî yên çapbûyî hene. Vê pêla dawî ji bi navê "Salname" pirtûkeke wî ya nû derket.

Kawa Nemir di derbarê Salnameyê de agahî dan Rûdawê û got ku navê Salname navê sêyemîn helbesta wî ya dirêj e, "Piştî Selpakfiroş û Bişenga Deşta Dûr ku sêyemîn xeleka pênc helbestên min ên dirêj e…"

Dû re lê zêde kir ku wî bi Salnameyê dil heye ku gelek heq û hesabên xwe yên li erdê mayî di seqaya sal û rojên ku dane dû hev de bigihîne perava çareseriyê, "Ji hêrs û neyartiyê bigirin heta girêka evîn û nevînê, têbîniyên min ên salanên jiyanî bi awayekî xef û teletel ji hemû helbestên Salnameyê re bûn mijar. Ji ber ku ez her dixwazim deq ji xwendevanan bi xwe re bimînin, ez ê zêde şirove nekim. Ev deq dixwazin şahperên xwe yên şikestî vekin. Ev ji, bi tenê bi bizav û hewldana xwendevanan pêkan e, ne bi pirrbêjiya min…" Nemir bi du rêzikan ve dixwaze ku behsa Salnameyê bike:

*"Ez li gel xeman bûm cot*
*Min rabû ji xeman re got…"*

Li ser armanca nivîsandina Salnameyê Kawa Nemir dibeje, "Beriya her tiştî, nivîsandin ji bo min jiyanî ye; min hîmên jiyana xwe ji sêzdeh çardeh saliya xwe de li ser nivîsandinê, xasma ji li ser helbestê danî. Û sal û zemanan ji min re xweşî û bextewarî neanîn. Her dîwaneke min belgenameya qonaxeke min a giyanî ye. Nizanim, tê heye ku ez ji dixwazim şerê xwe yê bi civaka xwe ya ketî û evîna xwe ya mirî re gaveke din nêzîkî kutakirinê bikim. Nivîsandina Salnameyê ji reng e wiha bê têgihiştin. Didim xwe, ku bibexşînim û bême bexişandin.

Asta wê ya zimanî, kurmanciya wê ji, bila ji xwendevanê/a korewer û helbestkarê/a etar re bimîne…" Li ser rewşa weşandin û belavkirina pirtûkên xwe ji Nemir diyar dike ku weşanxaneya wî Lis baştirîn weşanxaneya Kurdan e. "Lê hejmara helbestkar û nivîskarên me ji xwendeanên me zêdetir e. Li welatê me yê di dox û hefsarê de, çend kes hene dixwînin. Ji wan û pê ve kes tune. Heke hebin, bila bibêjin, va ye em li vir in!"


Kawa Nemir


Berfin Zenderlioğlu û Mirza Metin (Wêne: Rûdaw)

# Serpêhatiya "Reşê Şevê" berdewam e

**Salihê Kevirbiri**

**Rûdaw (Stenbol)** - Koma Şanoya Kurdî "Teatra Destar" ku xwediya rabirduya salekê ye, 23'yê cotmeha 2009'an bi lîstika "Reşê Şevê" li "Su Gosteri Sanatları Merkezi" ya Stenbolê tê pêşkêşkirin. Şayanê gotinê ye ku wê cara yekem lîstikeke kurdî bi jornivîsa tirkî bê pêşkêşkirin. "Reşê Şevê" çend meh berê li Zanîngeha Bilgiyê ya Stenbolê û Zanîngeha Teknîkê ya Rojhilata Navîn (ODTÜ) bûbû mêvanê hezkiriyên şanoya kurdî û pêrgî eleqeyeke mezin hatibû.

Lîstika Reşê Şevê ku ji hêla avakarên Teatra Destarê, Berfin Zenderlioğlu û Mîrza Metin ve hatiye nivîsandin, bi derhêneriya Mîrza Metin, 23'yê gulana îsal derketibû gera xwe ya herêma Kurdan û li deverên mîna Wêranşar, Erxenî, Çinar, Mêrdîn, Sixkê, Pîran û Sirûcê hatibû pêşkêşkirin. Koma Destar 5'ê hezîranê bi pêşkêşkirina lîstika xwe ya li Wanê dawî li gera xwe ya herêmê anîbû. Lîstika kurdî, li sehneya şanoyên dewletê ya li Wanê hatibû lîstin û ev yek bûbû sedem ku çapemeniya kurd û tirk bi rojan behsa vê bûyerê bikin. Bi gotineke din, dewletê bi awayekî fermî, li şanoyên dewletê cih dabû lîstikeke kurdî.

Mîrza Metin di rojên ku destûra lîstika wan hatiye dayîn de ji çapemeniya kurd re wiha gotibû: "Ji ber ku li şanoya dewletê destûr hatiye dayîn, emê ji dewletê re spasiyên xwe pêşkêş nekin. Ji ber ku ev mafê me yê xwezayî ye." Lîstika li şanoya dewletê hatibû pêşkêşkirin, di serî de Şaredarê Wanê Bekir Kaya û Parlamenterê Wanê Özdal Uçer, ji hêla hejmareke mezin ve hatibû temaşekirin. Parlamenter Uçer, piştî lîstikê bi awayekî ironîk diyar kiribû ku bi pêşkêşkirina şanoyeke kurdî dewlet perçe nebûye.

Reşê Şevê ji xebata sehneyê û nivîsa metnan pêk tê. Li gorî bilêvkirina Mîrza Metin, "Serpêhatiyeke mê" ye ku li ser "vehaneke nêr" hatiye avakirin: "Dîtiniyên jinekê yên rabirduya wê, ku ketiye ber bayê kaosên jiyana nêr, vediguheze şer û pevçûnên li dijî mêrên di jiyana wê de. Di lîstikê de, berhevkirina kaxedan a jinê, encamek e û 'nîha" ye. "Rabirdû", xeyalên ku bi veguhestinên tûj û dijwar pêk tên bixwe ne. Lê 'siya nêr' ku ji destpêka lîstikê heta dawiyê li sehneyê ye û xwe wekî 'kaosa mêran' dide naskirin, "dema fireh" e."

Lîstik bi bikaranîna hêmayên psîkolojîk û ironîk, li dijî feraseta mêrane ku xwe wekî 'dorpêçkirineke veşartî' dide xuyakirin, derdikeve.

Reşê Şevê ku wekî "Mêrê Şevê" an "Reşikê Şevê" ji tê zanîn û Rojhilata Navîn, Mezopotamya û Anatoliyayê xwediyê gelek nav e, wekî giyanewerên rûhanî tê zanîn ku wekî siyên dêwîn û siluetan an ji wekî cin û cinawiran têne dîtin. Ev giyanewerên hanê, ji zarokatiyê bigire heta navsereyan li ser însanan bûye hêmayên tirseke psîkolojîk û derûnî. Hê ji dema behsa serpêhatiyên li ser wan tê kirin, mirov vedicinîqe. Reşê Şevê û tevahiya navên ku jê derketine, di gramera kurdî de "nêr" in.

# Weşanxana Do 4 pirtûkên Salihê Kevirbirî çap kir

**FILÎTÊ QUTO / 20 Kilam & 20 Qewimîn**

"…Serpêhatiyên mîna Mala Eliyê Ûnis, Bavê Fexriya, Emê Gozê, Gênc Xelîl û Edûlê, Eminê Perîxanê, Bişarê Çeto, Dr. Yusuf Azizoğlu û hwd. pirr in. Pir giring e ku nirxên wisa hêja bêne parastin. Teknîk û mecalên îro rê didin ku mirov van nirxên pîroz biparêze, wan vejîne.

Nivîskar Salihê Kevirbirî di serdana xwe a Swêdê de qala xebatên xwe li ser van nirxên pîroz kiribû. Dengbêjiya Kevirbirî ji heye. Lê qet nebûye cihê niqaşê. Kevirbirî bi xwe gelek kilaman zane û bi formek modern dibêje. Kevirbirî bi berhema "Filîtê Qûto", 20 serpêhatiyên klasîk pêşkêşî xwendevanan dike. Berhema Kevirbirî, ji kesên dixwazin ji awira sînemayî, şanoyî, edebî û hwd. ji li ser van serpêhatiyan bixebitin ji deriyên nû vedike…" *Gabar Çiyan*

**SEDSALA QÊRÎNAKÊ; KARAPETÊ XAÇO**

"…Wexta Salihê Kevirbirî ku yek ji guzîdetirîn nifşa rewşenbîrên Kurd ên ciwan e, ji min re got, wî Karapêtê Xaço ziyaret kiriye û dixwaze derbarê wî de kitêbekê binivîse, ez gelekî dilşa bûm. Piştî sedsalekî, rewşenbîrek wê encax bibe neviçirkê dengbêjê, mîrasa wî jê dewr digire û derbasî nifşa xwe dike. Salihê Kevirbirî berê ji antolojiyeke dengbêjan amade kiribû.

Di vê xebata xwe de ew nîşanî me dide ku ji hostayên gotinên qedexebûyî ev yek hin bûye: Divê ti tişt winda nebe, ji bîran dernekeve û neçe, her gav di tarîxê de bê qeydkirin, mîrasa ku heyî her gav bê parastin û derbasî nifşên nû bibe. Xebata Kevirbirî hem panoramayeke balkêş a çaxên em têra xwe nizanin dide, hem jî mîraseke bêhempa ji me re dibexşîne…" *Mehmed Uzun*

**HEVÎRTIRŞ / Makale & Portre**

"…Kitêbkirina gotar-nivîsaran ji bo parastinê, bi ya min rê û rêbazeke pirr baş e û ya herî aqilane ye. Bifikirin, nivîskar an rojnamegerek di maweya nivîsandina xwe ya salên demdirêj de, bi sedan nivîsên cihêreng dinivîse. Gelo heger miroveki zêde ne rêkûpêk be, ji sedan nivîsên xwe yên çapkirî, dikare çendan bine deyne ber we? Bi ya min wê bersiv "neyînî" be. Lê dema ew nivîsar bibin kitêb? Nivîskar çiqas tevlîhev, nerêkûpêk be jî, dikare nivîsarên xwe yên ku bûne kitêb biparêze. Bi gotineke din, mixabin rêje û ihtîmala badilhewabûn û wendabûna kovar û rojnameyan -nexasim di nava Kurdan de- pirr zêde ye. Lê wendabûna kitêban zehmet e û parastina wan hêsan e. Sedema min a ku ez nivîsarên xwe yên di kovar û rojnameyan de çapbûyî de, wekî kitêb ji nûve çap dikim ev e…" *Salihê Kevirbirî*

**TEYÎBA MIN / Gotûbêj & Lêpirsîn**

"...Lewre, kesên ku dixwazin van taybetmendiyên nirxdar qezenc bikin, bila nivîsên Salihê Kevirbirî bixwînin. Naverok çi dibe bila bibe, Salih li ser çi jî binivîsîne, hem spehî dinivîsîne, hem jî germahiya çand, civak-jiyan û zimanê kurdewar dixe nav. Bi ser de jî mijarên ku li ser wan dinivîse, bi rastî jî balkêş ango serincrakêş in. Min bawer e dema ku we dest bi xwendina vê pirtûkê kir, hûnê di demeke kurt de xwe bigihînin dawiya pirtûkê û hewl bidin, ku hûn pirtûkên Salih yên din jî bi dest xwe ve bînin û bixwînin..." *Mustefa Reşîd*

**Salihê Kevirbirî**

Salihê Kevirbirî, di sala 1973'yan de li Batmanê hatiye dinyayê. Di sala 1992'yan de bi derketina Rojnameya Welat re, ji zimanê dayika xwe haydar bûye. Li herêma Çukurovayê di rojnameya Welatê Me de cara yekem dest bi karê rojnamegeriyê kiriye û heta rojname hatiye girtin, li herêmê berpirsiyariya rojnameyê kiriye. Piştî girtina Welatê Me, kar û barê rojnamegeriyê di rojnameya Azadiya Welat de berdewam kiriye. Di destpêka sala 1997'an de di heman rojnameyê de bûye berpirsê karê nivîsaran û ji ber vê peywira xwe, bi dadgeh, girtîgeh û dozgeran re nasraw bûye. Ji bilî Welat, Welatê Me û Azadiya Welat; nivîsar, hevpeyvîn û lêkolînên wî di gelek kovar û rojnameyan de derketine. Nivîskar, li ber qedandina "Antolojiya Dengbêjan" e û li ser romana "Koçero" kar dike. Kevirbirî endamê Navenda PEN'a Kurd, endamê PEN'a Navneteweyî û Endamê Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê ye.



Afîşa berhemên Salihê Kevirbirî

# "Em bi butçeyên komîk fîlman çêdikin"

*Dema em di nava tunebûnê de butçeya fîlm berhevdikin, ev cesaretê didê derdorê jî.*

*Li gel hinek endamên di nav grûbê de ku bê pere bixebitin jî, me nexwest em ti kesî bê heqdest bixebitînin. Gelek hevalên din jî serî li van rêbaza didin, lê edî ev mesela bêpere karkirin pir kesan diperçiqîne.*



Özkan Küçük li kuçeki Amedê belgefîlma xwe dikişîne... Di "Belgefîlmên dawî ku min kişandin 'Birinca Bi Nok' û 'Çîrokên Derdora Me 01' de min xwest em bi çavên xwe li xwe mêze kin."

**Mehmet Sebatlı**

Özkan Küçük hem belgefîlman dikişîne, hem senaryo dinivisîne hem jî produksiyona çend fîlman avêtiye ser milên xwe. Lê ew xwe wek produktor nabîne: "Karê ku bi kolektîfî bihate kirin bû para min û ez pê ve eleqadar bûm, ewqas. Heta niha yek fîlmek bi rêyên ku tên zanîn, ango rihet me nekişandine û çênekirine." Wek Özkan destnîşan dike di kişandina fîlmekî de tiştên ku gelek pere dikin hene. Mînak cast, karê grûbê, materyal û laboratuar. Ew mesrefên cast û karên grûbî kêm dikin û wisa film bi erzanî dikişînin. Küçük dibêje ku di navbera sinemavanên Kurd de têkiliyek xurt tune, ew wan wek qulingê bêref bi nav dike û wiha dibêje: "Her yekî ji bo xwe rêyek ditiye û dimeşe."

**We gelek imze avêtine binî fîlmên dokumenter, di nava van de yê xelat jî wergirtî hene. Hûn di van fîlman de bi taybetî berê kamereya xwe didin ku û kê?**

Di rastiyê de em berê kamerayê didin derdora xwe û carîna jî didin neynikê. Hemû tiştên ku bikevin nava film li kêleka min e û carina em bi xwe ne. Dokumentera li ser Mamoste Arsen Poladov min wisa çêkiribû; ez bi xwe jî bi dîmen û dengê xwe tevlî dokumenterê bûbûm. Di dokumentera bi navê "Li ser xaniyên Diyarbekirê" jî bi dîmenan nêzî derdorê dibim. Em li ser baniyan dibin çavdêrên tevgerên derdorê û carina em rastî siya xwe tên. Bêguman di vê navberê de em gav bi gav bi jiyana xwe ya rojane re jî rû bi rû diminin. Derdora me bi piranî bi sînor e, tenê tiştên ji me re pêwîst e em dibînin, lê carina perde tê vekirin û gelek tiştên taybet û cûda tên xuyakirin. Cihê ku em berê kameraya xwe didinê ne tenê rewşa me ya perîşan û dijwar e. Gelek derhêner tenê êş, keder û dijwariya Kurdan dibînin, tenê wê mijarê dikişînin. Di nav Kurdan de kêfxweşî jî heye, coş jî heye. Em êdî xurt in.

**Kurd li çar perçeyên Kurdistanê û li gelek deverên din dijîn; li wan deran gelek fîlman dikişînin. Di navbera we de pêwendî hene? Fikreke we ya tomarkirina xebatên xwe yê sînemaya Kurd heye gelo?**

Em ji hev agahdar in. Bi pirranî em li festîvalan hev dibînin. Divê çalakiyên wiha girîng her berdewam û xurt bin. Lê di navbera me de karekî hevpar tune. Sinemavanê Kurd wek qulingê bêref, her yekî ji bo xwe rêyek ditiye û dimeşe. Em li Tirkiyeyê hindik bin jî xwedî kevneşopiyekî ne, di navbera me de kolektîfiyek heye û dikarim bêjim me rêyek nîşan daye ku em li ser bimeşin. Ez zanim ku ev têr nake, di demeke nêz de belkî li Amedê em bingeha derfetên nû biafirînin.

**We produksiyona fîlmê Kazim Öz yê dawî, Bahoz kiriye. Projeyên we yên bi vî rengî çêbûn an jî wê çê bibin?**

Produksiyonên me ne wek yê din in. Em tiştekî bi awakî hêsanî nikarin bikin. Karê ku bi kolektîfî bihate kirin bû para min û ez pê ve eleqadar bûm, ewqas. Ne ji ber armanca sivikkirina vî karî, ji bo ku em cudahiya destnîşan bikin, dibêjim. Ji ber ku heta niha yek fîlmek bi rêyên ku tên zanîn ango rihet me nekişandine û çênekirine. Mînak fîlmê ku we behsê kir, butçeya wî bi pirranî bi awayekî marjînal hat berhevkirin; ji piştgiriya heval û dostan bigre, ji telîfa hin fîlmên me yên din û ji organîzasyonên cûr bi cûr.

Di nava tunebûnê de dema em butçeya fîlm berhev dikin ev jî cesaretê didê derdorê. Li gel hinek endamên di nav grûbê de ku dixwestin bê pere bixebitin jî, me nexwest em tu kesî bê pere bixebitînin. Gelek hevalên din jî serî li van rêbaza didin, lê edî ev mesela bê pere karkirin pir kesan diperçiqîne. Di çêkirina fîlmekî de tiştên ku pirr pere dikin hene. Mînak cast, karê grûbê, materyal û laboratuar. Em mesrefên cast û karên grûbî kêm dikin. Lê mesrefên din mirov nikare kêm bike. Bi kurtahî, em fîlmekî ji xebat û fedakariya hevalên xwe, ji xebata xwe ya kolektîf, ji piştgirî û baweriya dostên xwe û ji festîvalan diafirînin.

**Sinemevanê Kurd çawa produktora dibînin? Kî sponsoriyê dike? Li Tirkiyeyê û Ewrûpayê rewş çawa ye?**

Rewş hinek tevlihev e. Wek ez dizanim em bi serê xwe dixebitin û derfetan em bi xwe çêdikin. Ji bo hinek fîlman em fon dibînin lê ew jî têr nake û mecbûr dimînin di şertên gelek zehmet de fîlman bikişînin. Li Ewrûpayê kesên ku berhemên xwe difiroşin televizyonan zerar nakin. Em werin ser mijara sponsoriyê. Di nav civaka me de hin sponsorî baş nayê naskirin. Dema behsa sponsoriyê tê kirin, dibêjin qey mirov tenê ji wan pere dixwaz e. Ne wisa ye. Ji bo kliban sposnsor tên dîtin lê ji bo sînemayê gelek zehmet e. Sînemaya Kurd bi derhênerên xwe, senarîst, kameraman û karkerên xwe ve hîn neketiye asta bazarê. Lê hêviya min heye ku di demekî nêz de produktorên me jî çêbin.



Özkan Küçük

**Birêvebirekî ku bixwaze fîlmên kurdî çêke, navnîşanekî diyar heye ku serî lê bide?**

Li başûr hinek derhêneran hinek derfet bi dest xistine, lê ew ev çavkanî çawa bi dest dixin, ez nizanim. Belkî ev jî bi rêya pêwendiyên marjînal çê dibin, herwiha bê armanc pere tê belavkirin. Divê rêvebirên Başûr li vê yekê baldar bin û ji bo Kurdan dûr û dirêj bifikirin, ji ber ku derfetên heyî li Herêma Kurdistanê têra xwedî derketina sînemaya Kurd dikin. Wezîrê Çandê yê Tirkiyeyê bi sînor jî be alîkariya sînemayê dike, lê heta niha me qet jî wan alîkarî wernegirtiye. Herwiha hin çavkaniyên navnetewî jî hene. Ji bo hin rênasan divê ev çavkanî bixebitin, lê tenê hinek derhênerên xwedî xelat ji vê yekê sûd werdigrin. Li Bakur hinek derfetên ku çavkaniyên film pê werin çêkirin pêwist in. Mînak ji bo festîvala fîlmên bi xelat û piştgiriya projeyên nû, fon werin çêkirin, hemû derfet hene lê heta niha hewldanek çênebûye...

**We bi kijan derfetan dokumentera xwe kişand?**

Min dokumentera xwe li gor demê çêkir, ji aliyê peran de jî bi awayekî bi sînorkirî bû. Şansa min a çêkirina fîlman ew bû, ku di nava derdorekê de bim ku hevalên ku li gel wan bixebitim hebin û di nav karê ku dikin de hinek dema wan a heyî di wext de jê sûd werbigrin. Yanî eger şansa me hindiktirba belkî me qet fîlm nekişandiba.

**Fîlmên kurt an dirêj ku têne kişandin û dikevine sînemayê, di demek kin de derbasî înternetê dibin. Ev bandorek çawa li ser sektora sînemayê dike? Fîlmên pêşerojê wê çawa xwe finanse bikin?**

Fîlmên Kurd hîn bi firotina bilêtan ti qezinc bi dest naxin, ev pirsgirêkek cidî ye. Di derbarê derfetên bazara fîlmên Kurdî de gelek tişt hene ku em biaxifin. Nebûna salonên sînemayê li Hewlêrê, li gelek bajarên Bakur, nebûna belavker û produksiyonê mirov nikare bêje ku ji xebata fîlmên Kurdî peran bi dest dixe. Ji ber van sedeman fîlmçêkerê me tune ne. Li hêla din, her fîlmek jê re gelek pere divê. Televizyonên Kurd hîn ne di têgeha pêwîstiya fîlmkirinê de ne, lê hêdî hêdî ev bi pêş dikeve. Korsan bi awayekê cidî li seranserê cîhanê zerarê dide sektora sînemayê. Bi derketina înternetê re ev bileztir bû. Lê pirsgirêka me ya bingehîn nebûna sektorê ye. Ji ber vê sedemê em vî karê xwe tevî vî welatê em lê ne dikin û li wir di nav de dihelin.

**Niha di destê we de xebatek heye gelo?**

Bê guman ez çend projeyên dokumenteran difikirim, kişandina yekî ji wan berdewam e. Xebatek di derbarê Elewîtiyê ye ku disa çîrokekî ji derdora me ye. Herwiha cara ewil e ez senaryoke metrajdirêj dinivisînim û ji bo mesrefê li çavkaniya digerim.

**Di sînemaya Kurd de berhemên pirr ji ku tên? Ji Kurdên Bakur, Rojhilat, Başûr an jî Kurdên diasporayê?**

Di van salên dawîn de wek guhertinek hebe, ezmûneke çêkirina fîlman li Başûr û li nav Kurdên Îranê heye û çêkirina fîlman zêde bûye. Me ev kar li Bakur destpêkir, lê di hejmarê de me hindiktir çêkirin. Kurdên li Ewrûpayê sînema anîne merheleya naskirinê. Bêguman divê em piştigiriya festîvalên fîlmên Kurd jî bîr nekin, yên ku li Ewrûpayê tên çêkirin. Divê ev xebat werin dîtin, mebesta min kurtefîlm û dokomuneterên dirêj e... Mixabin em jî wek tevahiya cîhanê tenê fîlmên metrajdirêj wek berhemê sînemayê dibînin. Yê ku nayên hesabkirin nayên dîtin.

# Salane bi milyonan jin tên xetenekirin




*Li welatên Rojava keçên ciwan bi tişortên taybet xeteneya jinan protesto dikin*

**Semra Polat**

**Brûksel (Rûdaw)** – Li cîhanê li 28 welatan hersal bi milyonan jin tên xetenekirin. Bûyerên xetenekirinê bi piranî li welatên Afrîka pêktên û li vê parzemînê salane 2 milyon keç dibin qurbana vê kevneşopiyê.

Hîn jî ne diyar e ku di dirokê de kengê jin hatine xetenekirin, lê di nivîsên serdema antîk de diyar dibe ku hingê jin hatine xetenekirin. Li gor lêkolînan xetenekirina jinan berî ola Xristiyanî û Îslamê hebûye. Li gor Heredot, b.z di sedsala 5'an de, li welatên wek Misir, Fenike, Hitit û Etyopya jin hatine xetenekirin.

Li gor Pisporê Afrikayê Antropolog Cheikh Anta Diop, di serdema Fîrawûnan de xetenekirina jinan li tevahîya Misir û Afrikayê hebûye. Hingê birîna organa zayendî ya jinan di nav gel de wek merasima herî girîng dihate ditîn. Li gor belgeyên dîrokî jin dema ji pengava zarokatiyê derbasî dema xamabûnê dibûn, bi merasimê dihatin xetenekirin. Xetene bi mabesta kuştina hîssên jinê yê zayendî hatiye kirin.

**Jin hezaran sal in tên xetenekirin**

Li gelek welatên ku jin lê tên xetenekirin, temenê qurbanan li gor çand, bajar û hêrêman dugeherin. Mînak li hin herêman di dema jidayikbûnê de keç tên xetenekirin, li hin cihên din jî xetene di navbera temenê 7 û 10'an de tê kirin, li hinek herêman jî di dema kamilbûnê de keç berî zewacê tên xetenekirin. Li gelek welatan ji ber ku bi yasayan hatiye qedexekirin jî xetene bi awayekî nependî berdewam dike.

Di vê demê de xeteneya genîtal li gelek welatên Afrîka, Asya, Rojhilata Navîn û bi taybetî li welatên Ereb, Awûstralya û li Amerîka ya Latinî heye. Di nav jinên biyanî yên ku li Ewrûpa niştecîh bûne jî bûyerên xetenekirinê tê dîtin. Saziyên mafê mirovan, xetenê wek destdirêjiya mafê mirovan destnîşan dikin.

**Di Îslamê de xetene**

Di Îslâmê de li ser xetenekirina jinan ramanekî hevbeş yê oldaran nîne. Xetene di mezheba Henîfi de wacib e, di ya Malîkî de sinet e û di ya Hembelî de mustehek e! Li gor zanistên Îslamî li ser vê mijarê du hedîs hene. Li gor hedîsa Ebu Davud û Umu Atiyye el-Ensariye wiha tê ragihandin: "Li bajarê Medinê jinekî qiza xwe xetene kiriye. Resûlê Xwedê bangî wê jinê kiriye û gotiye 'zêde nebire.' Hindik birrîn di dema hevşabûnê de xweşiyê didê jinê. Ji bo mêran jî ev makbultir e.' Bi wî awayî pêxember vê fermanê daye."

Di sedsala 16'an de li gor Aliyyul Kârî yê şîrovekarê Henîfî, xetenekirin rudemê jinan ciwan dihêle, wan xweşik dike û daxwaza pêwendiyên zayendî kêm dike û hezkirina mêr hember jina xwe berzdike.

**Herêmên xetenekirinê**

Li gelek deverên cîhanê xetene tê pêkanîn. Welatên ku ev bûyer beşeke jiyanê ye ev in: Welatên Afrika, li hin herêmên Rojhilata Navîn, li Asya jî welatên Endonezya û Malezya. Li gor agahiyan salane bi milyonan jin tên xetenekirin. Bûyerên xetenekirinê bi piranî li welatên Afrîkayê rûdidin. Li Afrîkayê salane 2 milyon keç dibin qurbana vê kevneşopiyê. Li gor daneyên INED'ê (Enstitûya serhijmêrî) li Fransa 50 hezar jinên biyanî hatine xetenekirin.

**Welatên ku xetene kevneşopî ye**

Xeteneya jinan li 28 welatan tê kirin. Li gor welatan xetenekirin tê guhartin :

1-Welatên ku rêjeya xeteneyê ji sedî 85'e ev in: Cîbûti, Misir, Etiyopya, Erître, Gîne, Malî, Sîerra Leone, Somalî ve Sûdan.

2- Welatên ku rêjeya xeteneyê di navbera sedî 25 û 85'an de ye: Bûrkîna Faso, Afrîka ya Navendî, Côte d'Ivoire, Gambiya, Gîne-Bîssaû, Kenya, Lîberya, Morîtanya, Senegal û Çad.

3- Welatên ku nîsbeta xeteneya jina ji sedî 25'an kêmtirin ev in: Benîn, Kamerûn, Gana, Nîjerya, Ûganda, Kongo, Tanzanya û Togo.

Li gor UNICEF'ê, li 13 welatên Afrikayê dijî xetene û zextên beramberê jinan zagon hatine derxistin.

Li Afrîka herêmên ku jin têne xetenekirin.



*Keçên Afrîqî xeteneyê protesto dikin*

## Li Silêmaniyê 4 jin li ber sêdarê ne



*Girtegeha Silemaniyê* *(Wenê: Rûdaw)*

**Silêmanî (Rûdaw)** – Hat ragihandin ku dadgehên Silêmaniyê li 4 jinan cezayê sêdareyê birîne. Li gor daneyên Rêveberiya Zindana Çaksaziya Civakî ya Beşa Jinan di girtîgehên parêzgeha Silêmaniyê de 27 jin bi tawanbariyên cuda tên darezandin. Di nav wan de tawanbarên sûcên kuştinê gelek in. Li gor rayedaran 4 jinên girtî li beramber tawanên xwe sezayên sêdarê girtine. Rêvebera Çaksaziya Jin û Ciwanên Silêmaniyê, Umêde Mihemed Evdirehman di derbarê jinên li ber sêdarêne ji Rûdawê re wiha got: "Herçend di derbarê jinan de carna biryara darvekirinê tê dayin jî, ceza bi giştî nayên pêkanîn. Ji ber ku sêdarekirin li dijî prensîbên mafên mirovan e û li Kurdistanê jî nemaye."

Di nav girtiyên jin ên girtîgeha Silêmanî de 3 kes bi tawanbariya bazirganiya maddeyên bêhişker tên darezandin. Cara dawîn di destpêka cotmehê de li Qeladizê jineke bi sedemê bazirganiya narkotîkê hat desteserkirin. Li gor asayîşê yek ji jinên girtî daniştvana Sine ya Rojhilatê Kurdistanê ye.

## Li welatên Ereb perdeya keçaniyê tê firotin!

**Hewlêr (Rûdaw)** – Perdeya keçaniyê li welatên Ereb û Îslamî nîşana paqijî û keçaniya qîzan e û nemana wê jî dibe sedema sernizmî û heta kuştinê jî. Ev yek bazirganên Çînî kir nav tevgerê. Berhema ku wek "perdeya keçaniyê" tê binavkirin û li welatên Ereb tê firotin, bûyê sedema nîqaşan û kesên olî jî daxwaza qedexekirina vê berhemê û cezakirina bazarirganên perda keçaniyê dikin.

Berhema ku li Çînê hatiye çêkirin û bihayê wê 15 Dolar e, ji bo bazarên welatên Îslamî, bi taybetî ji bo Misir û Sûriyeyê tê şandin û li wan welatan bûye sedema nîqaşên germ. Her sal li welatên Erebî û Îslamî ji ber destdana perdeya keçaniyê bi sedan û bi hezaran bûyer diqewimin û dîsa çêkirina wê perdeyê bazara bizîşk û dermanxaneyên welatên Ereb û Îslamî germ kiriye. Ji ber ku li Çînê giringiyek wiha bi perdeya keçaniyê nayê dayîn, bazarek çêkirî ya wê perdeyê li wir tune û niha li wî welatî bi dehan reklam ji bo perdeya keçaniyê tê kirin. Mînak; "Bi 15 Dolaran perdeya keçaniya xwe vegerîne" an jî "di 5 çirkeyan de perdeya keçaniya xwe vegerîne."

Li Misrê li ser destûr dayîna firotina vê perdeyê gotûbêjeke germ heye. Sendîkaya bizîşkan li dijî firotina perdeyê ye û daxwaz dike ku rê lê were girtin. Hinek kes jî di wê baweriyê de ne ku ev berhem jî wê wek hebên viagrayê – ku destpêkê nîqaşên bi heman awayi hebûn, lê paşê bazar ji wan tablêtan tije bûn– piştî demekê bazaran tijî bikin. Ji aliyê din ve hinek oldarên Misrê û zaningeha El Ezherê dibêjin bila cezayê "heddê" ji bo bazirganan derbiçe ku vê perdeyê derbasî bazara Misirê dikin.



*Tiştê ku li welatên Musulmanan dibe sedema kuştinê, li Çînê dibe materyala bazarê...*

Hin ji melayan jî dibêjin "pêwîst e fetwaya heramkirina wê perdeyê derkeve."

Endamê Lêkolînên Îslamî li ZanÎngeha El Ezherê û Endamê Berê yê Parlemena Misrê, Dr. Ebdulmutî Beyumî fetwayek derxistiye û dibêje "Pêwîst e 'hedd' bi navê el-herrabe li ser wan bazirganên ku vê perdeyê tînin bê cîbicîkirin. Ev ceza jî ji lêxistina 10 qamçiyan, zîndanîkirin û dûrxistina ji welat pêk tê. Ji ber ku ev tişt tevlihevî û bê ehlaqiyê li welat belav dike."




# APEC dixwaze tecrûbeya 20 salan bibe welat

**Evdila Koçer**

**Stockholm (Rûdaw)** - Weşanxaneya kurdî ya Apecê ji aliyê niviskar û xwendevanên kurdî ve xweş tê naskirin. Di 1'ê sibata 1988'an de li paytexta Swêdê, Stockholmê hatiye ava kirin. APEC'ê heta niha li ser wêje, perwerde, lêkolîn û zarokan 325 pirtûk weşandine. Her wiha di navbera rojên 14-18 ve mehê de li gel weşanxaneyên swêdî beşdarî fûara pirtûkan ya Frankfurtê jî bû.

Editorê Weşanxaneya Apecê Ali Çiftçi ji Rûdawê re axifî û bersiva pirsên me da. Çiftçi da zanîn ku di destpêkê de wan giranî dane zimanê kurdî, "Yanê me digot; em çiqas bi zimanê kurdî kitêban biweşînin, wê nivîsandina bi kurdî pêş keve. Hejmar ji naverok û kalîte girîngtir bû. Niha bi giranî em kitêbên zarokan diweşînin. Ji ber piraniya kitêbên me yên zarokan werger in, em bi xwe hildibijêrin..."


*Editorê Weşanxaneya Apecê Ali Çiftçi*

**Berê adeta peymannivîsînî tunebû**

Çiftçi diyar dike ku di destpêka weşangeriya xwe de peymanên wan bi niviskarên Kurd re her bi devkî bûne û sedemên wê jî me re wiha rêz dike, "Dema me kitêbek bi zimanî kurdî ku ji aliyê niviskareke/î Kurd ve hatibû nivîsîn diweşand, ne bo ticarî her wek karekî îdeyel bû. Ev hem ji teref niviskar ve û hem jî ji aliyê weşanxane ve wiha bû. Firotina kitêba pirr hindik bû. Edeteka peyman nivîsînê jî wê demê li ba me tunebû. Niha rewş hatiye guhartin. Dema redaksyona me biryara weşandina kitêbeke wergirt û şûn de, divê peymanek di navbera weşanxanê û niviskar de bê nivîsîn..."

Li ser pirsa me Çiftçi dibêje ku ji bilî pirtûkên wêjeyî girîngî dane ser pirtûkên lêkolînî û yên zarokan, "Heta niha lêkolînên ku di derheqê Kurd û Kurdistanê de hatine kirin, pirrê caran ji aliyê kesên ne Kurd ve hatine kirin. Me xwest ev Kurd an dostên Kurdan ku bûne xwedî lêkolînan, bikaribin berhemên xwe di wextê de belav bikin. Di vî warî de ji çend berhem hatine weşandin. Ew berhem bi kîjan zimanî bin, tên weşandin. Heta niha me bi zimanê kurdî, swêdî, tirkî, erebî, farisî û bi îngilîzî berhemên bi vî rengî weşandine..."

**Her sal pênc-deh kitêban werdigerînin kurdî**

Editor Ali Çiftçi di berdewamiya axaftina xwe de bi bîr tîne ku wan heta niha bi dehan ji niviskarên swêdî ku tenê kitêbên zarokan dinivîsînin wergerandine, "Em her sal di navbera pênc heta deh kitêban werdigerînin bo zimanê kurdî. Pirranî bi kurmanciya latînî derdikevin. Bi soranî û dimilî jî tên weşandin. Carcaran em kurmancî û dimilî bi hev re, di eynê kitêbê de çap dikin. Carcaran jî soranî û kurmancî bi hev re tên çap kirin. Ew kitêbên ku tên wergerandin ji aliyê redaksyona Apecê wn hemû tên kontrol kirin. Pirrê caran yek an du ji endamên redaksyonê wergera ewil dikin û piştre hemû bi hew re li ser kar dikin..."




Çiftçi lê zêde dike ku sebeba ku giranî didin kitêbên zarokan ew e ku divê zarok di wextê xwe de bi kitêban re bibin heval, "Dema ew bingeh bo zarokan di wextê de neyê dayîn, wê piştre bo wan pir zehmet be. Nimûnên vê di her aliyê ciwata me de xûya ne! Sebeba ku me bi pirranî kitêbên zarokan ên ji zimanê swêdî dane wergerandin ew e; di wan 20 - 30 salên dawî de edebiyata zarokan a swêdî li dinyayê bi navûdeng e. Niviskarên wek Astrid Lindgrenê ku li dinyayê deng dane pirr kêm in. Kitêbên zarokan ku li dinê di wan salên dawî de bi pirr zimanan hatine wergerandin yên swêdî ne..."

Lê Çiftçi gazinc dike ku ew bi rehetî nikarin xwe bigihînin xwendevanên Kurd û dibêje ku zahmetiya herî mezin ya weşangeriya li derweyî welêt belavkirina kitêban e.

**Zimanê kurdî li Swêdê gulveda**

Em jê dipirsin ku gelo raste ku Dewleta Swêdê ji bo çapkirina pirtûkan piştgirî dide niviskar û weşangeran. Çiftçi balê dikişîne ser politikaya dewleta Swêdê ya li ser çandê, "Yanê salane ji butceya xwe ya dewletê pereyekî ji bo alîkariya kulturî, di her warî de, vediqetîne. Ji vê butceya xwe ya salane, ji bo ku xerîbên ku li Swêdê dijîn bikaribin ziman û çanda xwe biparêzên, alîkariyekê dide xebatên kulturî. Kurdên Swêdê ji vê politîka dewleta Swêdê gelek feyde dîtine. Di destpêka 1980'î de dema Kurd li welatên Ewrûpayê wek pênaber belav bûn, Swêd yek ji wan welatan bû ku hemêza xwe ji bo pênaberên Kurd vekir û ji bo zimanê wan jî bê parastin, îmkanên ku ji bo xerîbên din hebûn, ji bo Kurdan jî rê da ku em îro dikarin bi rihetî bêjin ku ji salên 1980'î û vir de zimanê kurdî bi taybetî bo Kurdên Bakûr, li Swêdê gulveda. Gelek berhemên edebî, lêkolînî û perwerdeyî bi zimanê kurdî hatin weşandin. Ji vir Weşanxaneya Apecê jî ji bo hinek kitêbên zarokan alîkarê wergirtiye. Herçiqas ew alîkarî wek berê nemabe jî, her berdewam e. Helbet ew alîkariya ku dewleta Swêdê bo hinek berhemên edebî dide hemû weşanxanan, ne bo temamê fînasa kitêbê ye. Hemû kitêbên ku tên weşandin alîkariyê wernagirin. Berhema bi naveroka xwe xort û bi kalîte, dikarê alîkariyê werbigire. Ew tenê bo teşwîk kirinê ye..."

Çiftçi jî me re bahs dike ku ew weşanxaneyên ku tenê li ser hesabê perewergirtinê weşangerî kirin, piştî demekê nikaribûn weşangeriya xwe bidomînin, "Me di destpêkê de çapxane jî pê re vekir ku em bikaribin weşangeriya xwe bêyî muhtaciya derûdoran, an kesan bimeşînin. Bi ya min heta karê çapxanê hebe û çapxane biji, wê weşangeriya Apecê jî berdewam be. Hêviya me ev e ku em bikaribin di demek nêz de vê tecrubeya zêdeyî bîst salan, bibin welêt jî!"




## Rojên Çanda Ermeniyan li Köln ê
# "Bo naskirinê axaftin divê"

**Köln (Rûdaw)** – Ermeniyên diyasporayê di navbera 6 û 27'ê mijdarê de li bajarê Kölnê di bin navê "Almanya û Ermenî" ji bo cara şeşem Rojên Çanda Ermeniyan li dar dixin.

Rojên çandê ji aliyê Lijneya Çandî ya Dêra Ermeniyan li Almanyayê "Der Kulturausschuss der Diözese der Armenischen Kirche Deutschland" û Weqfa Perwerdeyê ya Dêra Katolîk "Katholisches Bildungswerk Köln" tên amade kirin û çendîn saziyen Ermeniyan li Almanyayê û Daîreya Çandê ya bajarê Köln ê "Kulturamt der Stadt Köln" jî piştevaniya çalakiyê dikin.

Endamê Lijneya Çandê ya Dêra Ermeniyan, Serope Odabasyan ji Rûdawê re bahsa armancên Rojên Çandê kir û got: "Em dixwazin şopên Ermeniyan yên li Almanyayê bi xelkê vê derê bidin naskirin. Bi belgeyî şopên Ermeniyan li Almanyayê vedigerin heta berina 1000 sal, lê ji ber sedemên dîrokê ew mixabin hinekî winda xuya dikin. Wekî din armanca me hevûdu naskirin, hevûdu naskirina Ermeniyan û xelkê Almanyayê ye û naskirin jî bi hevûdu re axaftinê dibe. Em dixwazin platformekî bi hevre axaftinê amade bikin"

Rojên Çandê wê bi bîranînekê dest pê bikin. Bi munasebeta 140'em roja jî dayîk bûna komponîstê Ermenî yê navdar Komitas Vardapet şevek nasandina wî tê amade kirin û muzîsyenên Ermenî Khatchig Yilmazian, Aram Mikayelyan, Petros Sargisian û Armine Ghuloyan jî wê bi mûzîka xwe mêvanên şevê bibin rojên Komitas. Wekî din kesên wek niviskar Doğan Akhanlı, komponîsta Jazzê Jarry Singla û mamosteyê zimanê ermenî Hasmik Hakopjan jî tevlî rojên çanda Ermeniyan dibin. Doğan Akhanlı wê li ser wekheviya salên 1915 û 1945'an û bi vî awayî wekheviyên di dîroka Ermenî-Tirk û Alman-Cihûyan de agahiyan bide.


*Gelek hunermendên Ermenî ji ber sedemên aborî û etnîkî niha li derveyî Ermenistanê û welatên ku lê ji dayîk bûne dijîn*

Li gor agahiyên Odabasyan li Almanyayê derdora 25-30 hezar Ermenî dijîn û li parezgeha Nordrhein-Westfalen (NRW) jî 10 hezar dijîn. Di nav wan de kesên ku di salên 1970'an de wekî karker ji Tirkiyeyê hatin, yên ku di dema Şoreşa Îslamî ji Îranê reviyan û kesên ku piştî hilweşîna Sovyetê berê xwe dan rojavayê Ewrûpayê, hene.

## Li Almanya bo zarokên Êzdî waneyên olî

# “Parastina Êzdiyatiyê, parastina nirxên kurdî ye”

**Evdila Koçer**

**Oldenburg (Rûdaw)** - Pirtûka bi navê Êzdiyati-1 (waneyên olî ji bo zarokên Êzdiyan) ji aliyê Yekîtiya Mamosteyên Kurd-YMK'ê ve hat weşandin. Pirtûk bi tevahî ji 10 beş û 36 waneyan, jandilek, 6 jê yên rojane, 5 ji yên taybet bi tevahî 11 diha û 8 qewlan pêk tê. Pirtûk bi armancên danenasîna xalên bingehîn yên baweriya Ezdiyatiyê yên wek baweriya bi Xwedê û milyaketan, tiştên xêr û guneh, ferz, civak, xas û babçekên Êzdiyan, hin nirxên pîroz, rojî û cejin, marîfet, qewl û diha ûhwd. û herwiha danefêmkirin û naskirin, rêzgirtin û hevdûpejirandina olên Kurdistanî hatiye amadekirin.

Nivîskarê pirtûka “Êzdiyatî“ Emîn Akbaş di derbarê pirtûka xwe de ji Rûdawê re axivî. Akbaş da zanîn ku him zarok û him jî kesên mezin gava pirtûkê bixwînin, wê di derbarê bîr û baweriyên ola Êzdiyatiyê de bibîne xwediyên zanîn û agahdariyên gelek zelal: “Herwiha gava kesên ne Êzdî jî vê pirtûkê bixwînin, gelek tiştên nerast ên ji aliyê kevneperestan ve, di serê wan de hatine bicihkirin wê werin guhertin. Ez bi kêfxweşî karim bêjim, ku armancên min dabûn pêş xwe ji niha ve hatine pêkanîn….“




Emîn Akbaş diyar kir ku fikra amadekirina “Êzdiyatî“ ji aliyê hin beşdarên kongireya 10. ya Yekîtiya Mamosteyên Kurd- YMK ya di 28'ê çileya 2006'an de li bajarê Wuppertalê hat lidarxistin ve hat pêşniyarkirin, “Ku yek ji bo elewiyan, yekê ji bo Êzdiyan û yek jî, ji bo misilmanan sê pirtukên dersên olî bên amadekirin. Ji bo amadekirina pirtûka Êzdiyan kongireyê erk da min. Min jî hewl da xwe ku biryara kongireyê û herwiha erka sipartibû min bi cih bînim…“

Dû re dibêje ku heta niha rexneyên erênî ji pirtûkê wergirtine, “Lê bi hindikayî be jî hin reaksiyonen neyînî jî hene. Xwediyê reaksiyonên neyînî, ew kesên ne xwediyên zanînên pedagojî û ilmî ne û li gor zanîna jî dê û bavê xwe girtine, Êzdiyatiyê nasdikin in…“

Akbaş destnîşan dike ku her kesê êzdî di derbarê bîr û baweriya Êzdiyatiyê de xwediagahdarî ye, “Hin kes hene, pirtûk sitandine, lêbelê nikarin bixwînin. Hin kes hene, karin bixwînin, lêbelê nîzanin tiştên hatine nivîsandin çiqas rast in? Hin kes jî hene, bi rastî jî xwendina wan baş e û bi awayên zanistî pirtûkê dinirxînin û dîtinên xwe jî min re diyar dikin. Rexneyên van kesan erênî ne û hêz didin min. Hin rexne jî hene, bi rastî jî ne rexneyên dostanî ne. Bingeha wan xwe digihîne bêtahamûlî û hesûdiyê. Jî ber vê yekê jî, ev rexne jî bo min bê bandor in…“

Li ser belavkirina pirtûka xwe ji gazincan ji saziyên Êzdiyan dike, “Wek di pirtûkê de jî tê dîtin, min bêyî yekê jî yekê baştir, an jî yekê nêzî xwe, ya dinê dûrî xwe bibînim, cih daye hemû saziyen Êzdiyan. Min hêvî dikir, ku hemû êzdî vê pirtûkê pirtûka xwe bibînin û jî bo belavkirin û firotina wê hewl bidine xwe. Lê nêzikbûna vê gavê diyar e, me xemgîn dike. Gava saziyên Êzdiyan di warê belavkrin, firotin û bikaranînê de hewl nedine xwe, YMK tenê bi tena serê xwe wê nikaribe pirtûkê bigihîne her derî. Ev rewş jî wê YMK'ê mecbûr bike, ku biryara ji bo berdewamkirina vê xebatê sitandiye, cardin di ber çav de derbas bike…“

Em jê dipirsin ka rola Êzdiyan di nava çand û hunera kurdî de çi ye, Nivîskar Akbaş wiha dibêje, “Ez bi kubarî karim bêjim, ku Êzdiyan tevî hemû astengî, ferman û qirkirinan, gelek nirxên kurdan yên netewî yên mîna çand, irf û edet, libas, ziman ûhwd. parastine û heta îro anîne. Li cihên derfet ji wan re hatine dayîn, kesên mîna gorbuhişt Qanatê Kurdo û Ordîxanê Celîl û herwiha Prof. Dr. Celîlê Celîl yê vêgavê li Nemsayê Înstîtûta Kurdolojiyê bi rê ve dibe, gelek berhemên giranbûha xistine xizmeta gelê kurd...“

**Êzdiyatiyê cûdahiyê naxe navbera ol û netewan**

Vê carê jî berê pirsa me wiha ye, “Eger ku musulmanek bixwaze Êzdiyatiyê nas bike, tu yê bi kurtasî jê re çi bibêjî?”, wiha li me vedigerîne: “Ez dikarim bêjim, ku Êzdiyatî oleke netewî ye û ola kurdan ya herî kevin e. Baweriya Êzdiyan bi Xwedê, Tawisî Melek û Şixadî tê. Bi navên “Mishafa Reş” û “Kitêba Celwe” du pirtûkên Êzdiyan yên pîroz hene. Êzdî pêxemberan jî nas dikin, jî wan û herçar pirtûkên pîroz yên olên din re rêz digirin. Ola Êzdiyatiyê cûdahiyê naxe navbera ol û netewan, kesî jî kesî çêtir nagire.

**Parastina ola Êzdiyatiyê parastina nirxên kurd û Kurdistanê ye**

Li ser pirsa me ya “Gelo rewşenbîrên kurd çiqasî hay ji erf û adetên kurdên Êzdî hene?”, Nivîskar Emîn Akbaş dibêje ku bi hindikayî be jî ji aliyê rewşenbîrên Kurd ve jî bo bîr û bawerî û herwiha orf û edetên Êzdiyan nêzikayiyek tê diyarkirin û hin lêkolîn tên kirin.

Di berdewamiya axaftina xwe de wiha li gotinên xwe zêde dike, “Lêbelê ne bes e. Jî ber ku Êzdî ji sedên salan ve bi neheqiyên dervayî mirovahiyê re rûbirû mane, hatine qetilkirin, talankirin û koçberkirin. Herwiha ji bo diyarkirina rastiya ola Êzdiyatiyê hemû derfet jî holê hatine rakirin. Tu carî dewletên Êzdî lê dijîn/dijiyan derfet nedane ku Êzdî bîr û baweriya xwe geş bikin, pêş de bibin. Di ser de jî him baweriya Êzdiyatiyê bi gelek tiştên dervayî mirovahiyê itham kirine û him jî derfet nedane, ku Êzdî bersiva xwe bidin an jî xwe biparêzin. Jî ber van sedeman, di serî de rewşenbîrên êzdî, hemû rewşenbîrên Kurd yên xwe niştimanperwer dibînin, divê jî bo parastina nirxên ola Êzdiyatiyê bi berpirsiyarî tevbigerin. Ji ber ku parastina ola Êzdiyatiyê parastina nirxên Kurd û Kurdistanê ye.

Li ser plan û projeyên xwe yên nû Nivîskar Akbaş dibêje ku xebateke wî a din jî, amadekirina pirtûka xebatê ya bi vê pirtûka hatiye amadekirin ve girêdayî ye, “Ev pirtûk ji qasî 100 rûpelan pêk tê. Zarok li gor naveroka babetên pirtûkê, rûpelên pirtûka xebatê, dinivîsin, cihên vala dadigirin, peyvên têkildar bi hevdû digihînin, xaçepirsan dadigirin, nîşan dikin ûhwd. Him ji ber kêmasiya derfetên YMK'ê yên aborî, him jî kêmasiya zanîna kesên pirtûka xebatê bikirin, her çiqas hatiye qedandin jî, em çap nakin. Lê belê gava saziyên Êzdiyan li pirtûka hatiye amadekirin bi awayekî erênî xwedî derkevin û di dersên di saziyên xwe de didin de bikar bînin, em amade ne bêyî berjewendiyên aborî hêvî bikin, wek kopî têxine xizmeta wan, an jî ew li gor derfet û pêwistiyên xwe ji xwe re çap bikin. Jî xeynî wê jî, eger jî bo pirtûka hatiye amadekirin reaksiyonên erênî û herwiha piştgirî werin diyarkirin, ez amade me ku pirtûka Êzdiyatî-2 jî amade bikim…“




■ ”Gava kesên ne Êzdî jî vê pirtûkê bixwînin, gelek tiştên nerast ên ji aliyê kevneperestan ve, di serê wan de hatine bicihkirin wê werin guhertin.”

### Emîn Akbaş kî ye?

Hêjayî gotinê ye ku Nivîskar Emîn Akbaş di sala 1960'an de li gundê Şimîza girêdayiyê navçeya Qubîna Batmanê hatiye dinyayê. Heta derketina xwe ya Ewrûpayê bi qasî heft salan li dibistanên Tirkiyê mamosteyî kiriye. Ji sala 1993'an heta 1996'an serokatiya Yekîtiya Êzdiyan kir û ji damezirandina Yekîtiya Mamosteyên Kurd ve di nav kar û xebatên YMK'ê de ye. Ew yek ji mamosteyên kurdî ye yên ku cara yekemîn li Almanyayê fermî hatine tayînkirin û ji sala 1993'an ve li dibistanên Bremenê dersên kurdî dide zarokên Kurdan. Heta niha wî bi tena serê sê pirtûkên bi navên “Tiştonek-1“, “Pexşanên Têgihiştinê-1“ Êzdiyatî-1“ û tevî hin mamosteyan jî sê pirtûkên bi navên “ABCya kurdî“ “Xwendin û nivîsandin pir xweş e“ û LÛK-Kurdiya hêsan amade kiriye.

# Kurdên Rojava li Bonnê helbesta xwe nîqaş dikin

**Bonn (Rûdaw)** - Roja Helbesta Kurdî li Rojava (RHKR) isal di 24'ê Cotmehê de li bajarê Bonnê tê lidarxistin. Roja Helbestê cara çara ye li Almanya pêk tê. Çav li rê ye ku isal jî gelek helbestvanên Kurd tevlî vê rojê bibin. Hunermenda şêwekar Cihan Birahim bi tabloyên xwe yên rengîn û Ronî Can jî bi muzîk û dengê xwe wê beşdarî roja helbestê bibe. Herwiha çar helbestvanên Alman û helbestvanê Kurd Eskerê Boyik jî wek mêvanê rûmetê wê tevlî bibin.

Yek ji amadekarê Roja Helbesta Kurdî li rojava Elî Cefer di derbarê vê çalakiya wêjeyî de ji Rûdawê re axivî. Cefer da zanîn ku ev xebata wêjeyî li gel bîranîna helbestvan Cegerxwîn girêdayî ye, “Me ev çalakî xiste roja koçbûna wî (22. 10), ji ber ku roja jidayikbûna wî jî me ve ne diyar bû. Cegerxwîn di pêşxistina helbesta kurdî ya kurmancî de berz û bilind e. Helbestên wî li seranserî Kurdistan û li nav Kurdên dervayî welêt hatine belav kirin...”

Elî Cefer li ser çîroka vê roja helbestê jî ji me re wiha got: “Di destpêka Çiriya Pêşin sala 1993 an de, em çar kes; Ebdilmecid Şêxo, Heyder Omer, Rûxweşê Zîvar û ez, ji bo çalakiyeke wêjeyî bi boneya bîranîna koçbûna Cegerxwîn, li gel hevdu axifîn. Hizra 'Roja helbesta kurdî li Sûriyê' jî wê gengeşeya hevbeş derkete holê, ku çalakiya bîranîna koçbûna Cegerxwîn bi awayê mihrîcanekê pêk were û tê de jî roja koçbûna wî wek 'Roja helbesta kurdî li Sûriyê' were ragihandin, ku mihrîcana helbesta kurdî her sal di wê rojê de were lidarxistin. Me bang li hemû helbestvanan kir û di roja 21'ê Cotmeha 1993' an hat pejirandin....”

Li ser armancên vê rojê jî Elî Cefer wisa berdewam dike, “Mebesta me ew e; ku bi kêmanî helbestvan û rewşenbîrên Kurd salê carekê li cihekî hevdu bibînin, da ku karibin baştir hevdu nasbikin, herwiha berhemên hevdu bibînin û ji hezkiriyên wêje û çanda kurdî re hestên xwe di riya xwendina helbestên xwe re derbirînin. Lê mebesta herî nirxbiha ew e, ku ev çalakî karibe helbestvanên nû kifş bike û keysan ji bo wan peyda bike û wêjeya wan li ba civakê werin naskirin.”

Elî Cefer destnîşan dike ku Navenda YASA ya li Bonnê dimîne alîkariya komîta amadekar dike.

Sala borî bêtirî 20 helbestvan û nêzîkî 180 ronakbîrên Kurd beşdarî Roja Helbesta Kurdî li Rojava bûbûn.


*Elî Cefer*



*Li Kurdistanê di sala 2008'an de 625 ton hingiv hat hilbirandin*

# Hingivê Kurdistanê li Fransa bû yekem

**Ebdûllah Nihêlî**

**Rûdaw (Paris / Dihok)** - Di pêşangeha Api Mondia ya Fransa de ku bi tevlîbûna hingivên 600 welat û herêman pêk hat, hingivê Kurdistanê pileya 9.8 ango "gelek baş" bi destxist û ketin nav baştirîn hingivên cîhanê.

Piraniya herêm û welatên ku hingiv lê hene, di her du salan carekê de li bajarê Api Mondia hingivên xwe dixin pêşbirkê. Komeleya Hingivên Kurdistanê bi alîkariya şirketa geşt û gûzar Pîro Gruop a li Dihokê, hingivê endamên xwe gihand Api Mondia ya Fransayê.

Serokê Komeleya Hingivên Kurdistanê behsa encamên ku hingivê Kurdistanê bidestxist û wiha got: "Piştî ku li Fransa hingivê Kurdistanê hat naskirin, bû cihê balkêşana amadebûyan. Piştre 13 ceribandin hatin kirin. Di encamê de ji pileya 9.8 (ji sedî 80, 89) ango "gelek baş" bi destxist. Ev encamekî pir baş bû, ji ber standarta herî baş bi pileya 16.79'an bû.

Serokê komelê Arif Şêranî ji Rûdawê re dibêje, ji bo wan wek xewnekê bû ku ew beşdarî fûara Fransa bibin û di nava hingivên cîhanê de hingivê Kurdistanê bidin naskirin: "Piştî me pileya zor baş wergirt, bi navê 'hingivê zêrî' hat binavkirin. Piştre ji Serokê Hingivê Cîhanê hat gel me û pîrozbahî li me kir. Min û wî bi hevre hingivê Kurdistanê danî di methefa Fransa de. Me bi vê encamê madalya serkeftinê stend. Piştre jî çendîn şirketên şareza peyman li gel me morkirin ku bên serdana Kurdistanê."

Pêşengeha hingiva ya sala 2011'an wê li Arjantînê bê sazkirin.

Heta niha hingivên Kurdistanê bi taybetî bo Dûbai dihat verêkirin; "Li Kurdistanê 16 hezar hingiva hene û li gorî statistika sala 2008'an berhemê hingivê Kurdistanê 625 ton bûye. Sala borî 42 ton û 500 kg hingiv ji Hewlêr bo Dûbai hat rêkirin. Lê sal bi sal gelê Kurdistanê ji zêdetir ji xwarina hingiv hez dikin. Niha li Kurdistanê rêjeya xwarina hingiv gihaye ji sedî 8 e û ev rêje beramberî welatên cîhanê kêm e."

# Penaberên Kosovoyî li ber şandinê ne

**Berlîn (Rûdaw)** – Deh salan piştî dawiya şerê Kosovoyê, bi hezaran penaberên Kosovoyî yên ku li Almanyayê dijîn, li ber paşveşandinê ne. Piraniya wan Roma ne. Du rê li ber wan hene: an ewê bi xweşî vegerin welatê xwe û hinek alîkariya aborî ji bistînin, an jî ewê bi zorê paşve werin şandin.

Li gor agahiyên rojnama Süddeutsche Zeitung 14 hezar penaberên Kosovoyî li ber şûndeşandinê ne. Peymanek li ser paşveşandina penaberan amade ye û tê gotin ku ewê di vê payizê de bê mohrkirin. Niha bi fermî bêtirî 14 hezar penaberên ji Kosovoyê li Almanyayê dijîn û piraniya wan jî Roma ne.

Li gor peymanê divê Kosovo hemû mirovên ku xwedî belgeyên ji Kosovoyê ne, an jî li wê derê jiyabin, paşve bigre. Li gor daxuyaniyên Wezareta Hundir ya Almanyayê, Hikûmeta Almanya û ya Kosovayê li ser wê yekê li hev hatine ku salane herî zêde 2500 daxwaznameyên ji bo paşveşandina penaberan pêşkêşî rayedarên Kosovoyî bike.

Pispora siyaseta hundir ya Partiya Çep "Die Linke" Ulla Jelpke ji ev pilan bi tundî rexne kir û got ku herî zêde ji xwe gelê Roma li Kosovayê di bin zehmetiyan û newekheviya civakî de dijîn û niha jî dixwazin wan paşve bişînin.

Ji 55 hezar Kosovoyiyên ku niha li Almanyayê dijîn, nivê wan ji ber şerê di navbera Yûgoslavya û NATO'yê di sala 1999'an de hatine Almanyayê û di nava wa de gelek Roma jî hene. Bi sala ye ku Hikûmeta Almanyayê hewldide ku bi alîkariya aborî – vê gavê ji bo kesên mezin 750 Euro û heqrêya wan tê dayîn – penaberên Kosovoyî ji bo paşvevegerê amade bikin. Sala borî 900 Kosovayî vegeriyabûn welatê xwe.



*Gelê Kosovo di dema êrîşên Sirbistanê ketibûn rêyên ciyayî û koç kiribûn...*



*Wezîrê Çandê yê Fransayê Frédéric Mitterrand*

# Doxîna wezîrê çandê Fransa tevlîhev kir

**Paris (Rûdaw)** – Fransa ji skandalên rayedarên xwe xilas nabe. Ji aliyekî ve Serokê Dewletê Nicolas Sarkozy bi pêşniyazkirina lawê xwe yê 23 salî ji bo rêveberiya yek ji giringtirîn saziyên dewletê yên bazirganiyê EPAD'ê bûye hedefa êrişên tund. Li aliyê din jî Wezîrê Çandê yê Fransayê Frédéric Mitterrand bi romanek xwe û qebûlkirina nêrbaziya xwe rojeva siyasî germ kiriye. Lê dijberên Mitterrand wî bi zarokbaziyê tewanbar dikin û daxwaza îstifaya wî dikin.

Neviyê serokê berê yê Fransayê François Mitterrand, Frédéric Mitterrand di hevpeyvînekê li gel televizyona Fransî qebul kir ku peywendiyên wî yên nêrbazî hebûne, lê wî di heman demê de red kir ku peywendiyên wî yên cinsî li gel zarokan hebûn û got: "Ew mêrên ku peywendiya min ya cinsî bi wan re hebû, hemû hevtemenên min bûn, ne zarok bûn û bi razîbûna wan bû." Frédéric Mitterrand got nêrbazî ji zarokbaziyê cuda ye û ew bi tundî li dijî zarokbaziyê ye û ew ji ber nêrbaziyê jî dest ji karê xwe nakşîne.

Frédéric Mitterrand di romana xwe ya li ser tûrizma seksê ku di sala 2005'an de hatiye belavkirin, behsa serpêhatiyên tûristekî seksê dike. Mitterrand ê ku nêrbaziya xwe qebûl dike, di romanê de bahsa pêwendiyên cinsî li Taylandê li gel hin kurên ciwan kiriye û roman ji bi forma "ez" hatiye nivisandin. Hefteya borî cigira serokê partiya rastgir Front National, Marine Le Pen ev roman anîbû rojevê, piştî ku derhênerê Amerîkî Roman Polansky li Swîsreyê bi tawana ku wî di temenê 32 salî de li gel keçeke 13 salî seks kiriye, hatibû binçavkirin û Mitterrand jî nerazîbûna xwe li dijî binçavkirina Polansky anîbû ziman.

Di vê navberê de Mitterrand got ku wî di 8'ê vê mehê de Fransayê Nikolai Sarkozî ditiye û Sarkozî jî piştevaniya xwe ji wî re nîşan daye. Beriya Ku Sarkozî, Frédéric Mitterrand bike Wezîrê Çandê, wî pirtûka Mitterrand xwendibû û helwesta xwe ya li hemberî wê pirtûkê ji rojnama "Le Nouvel Observateur" re ronî kiribû: "Frédéric kesekî biwêr û behredar e." Mitterrand jî di derbarê wê yekê de ka wî şaşî kiriye, wiha bersiv da: "Dibe min şaşîtî kiribe, lê min tawan nekiriye."

Tirkiye û Îsraîl:

# Rêzefilmekî Îsraîl û Tirkiyeyê anî pêşber hev



Wêneyek Ji Rêzefilmê "Ayrılık / Veqetîn"

**Serwîsa Cîhanê** – Pêwendiyên di navbera Îsraîl û tena hevalbendê li herêmê, bi Tirkiyeyê re, ber bi xerabûne ve diçin. Di heman demê de Tirkiye di nava hewldanan de ye ku pêwendiyên xwe û cîranên xwe xweştir bike, heta wezîrên derve yên Tirkiye û Sûriyeyê li ser tatbîqatên leşkerî di sala 2010'an de jî danûstandin kirin.

Di demekê de ku her diçe pêwendiyên di navbera Îsraîl û Tirkiye ber bi sarbûne ve diçin, têkiliyên Tirkiyê û cîranê wê geştir dibin. Ji aliyekî ve Tirkiye dixwaze bi Ermenistanê re 'cîrantiya bê têkiliyan' a 95 salan ji holê rake û pêwendiyan çêke – di wî warî de çend gav jî avêtin – ji aliyê din ve jî pêwendiyên dostane bi Îraq û Suriye ber bi geşbûne diçin.

Pêwendiyên di navbera Tirkiye û Îsraîlê bi awayekî eşkere piştî operasyona Îsraîlê di dawiya sala borî – ku di encamê de 1400 kes hatibûn kuştin – ber bi sarbûnê be çûbûn. Piştî wê operasyonê zexta raya giştî li Tirkiyeyê bilind bûbû û Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdoğan ev helwesta Îsraîlê li dijî Filistîniyan bi tundî şermezar kiribû. Ev gengeşiya di navbera herdu hikûmetan gihişt astekî wiha ku Erdoğan di dema Civîna Aboriya Cîhanê li Davosê bi hêrsbûneke mezin presskonferansekî li gel serokê Îsraîlê Shimon Peres biterkîne.

Di van rojên dawî de jî rayedarên herdu welatan bi biryar û daxuyaniyên çapemeniyê tansiyona di navbera herdu welatan de gur dikin. Ji aliyekî ve Tirkiye nexwest ku Îsraîl tevlî tetbîqateke leşkerî ku dihat çaverêkirin li Deşta Konyayê bi tevlîbûna Tirkiye, DYA, Îtalya, Hollanda û Îsraîlê bihata lidarxistin, bibe û ji ber wê helwesta Tirkiyeyê welatên din jî xwe dan paş û tetbîqat ji aliyê Wezareta Derve ya Tirkiyeyê hat paşvexistin. Li gor nivîskarê rojnameya Sabahê Erdal Şafak, "Li Tirkiyeyê di van demên dawîn de ti kesî nedixwest ku balafirên şer ên Israîlê li ezmanên Tirkiyeyê werin dîtin."

Îsraîl ji aliyê xwe ve rêzefilmekî bi navê "Ayrılık / Veqetîn" ku van dawiyan di televizyona Tirkiyeyê TRT'ê de tê weşandin ji xwe re kir hedef û hevalbendê xwe yê berê ji ber weşana fîlmên bi vî rengî bi tundî şermezar kir. Ji bo vê yekê Hikûmeta Îsraîlê bangî balyozê Tirkiyeyê yê li Tel Avîvê kir û nerazîbûna xwe li dijî "sorkirina medyayî" anî ziman. Wezîrê Derve yê Îsraîlê Avigor Liebermann got ku ew bi zehmetî dikare bawer bike ku fîlmekî wiha demagojîk li welatekî dijmin bê weşandin, lê qet ne li welatekî ku pê re pêwendiyên dîplomatîk hene.

Beriya ku Wezîrê Derve yê Tirkiyê Ahmet Davutoğlu jî berê xwe bide Bosna û Herzegovîna, wî li Eneqerê bang li Hikûmeta Îsraîlê kir ku ji bo çareserkirina pirsgirêka di navbera xwe û Filistîniyan de gavan bavêje. Davutoğlu got ku Tirkiye wê pêşwaziya siyasetek ku dibe sedema gengeşiyan neke û welatî wî weke mezintirîn welate herêmê wê li dijî hemû hewldanên ku dikarin bibin sedema nearamiya li herêmê, reaksyon nîşan bide. Davutoğlu her wiha rexneyên Îsraîlê yên di derbarê weşana filmê Ayrilik jî red kirin û got ku ti berpirsyariya Hukûmeta Tirkiyeyê di vê mijarê de nîne û li Tirkiyeyê sansûr tune ku ew pêşî li fîlmekî bigrin.



Leşkerên Amerîkî ji bo operasyonên li dijî Talîbanan tên amade kirin

# Obama bi dizî leşkeran dişîne Afxanistanê

**Serwîsa Cîhanê** – Bi hatina Barrack Obama ya ser desthilatê, Hikûmeta Dewletên Yekgirtî yên Amerîkayê (DYA) ket nava guherîna stratejîya xwe li Afxanistanê. Yek ji xalên vê stratejîya nû zedêkirina leşkeran e li wî welatî. Niha jî tê îdiakirin ku Obama bi dizî biryara 13 hezarên din jî daye.

Biryar hatiye dayin ku heta dawiya salê 68 hezar leşkerên Amerîkî li Afxanistanê bêne bi cih kirin û li gor agahiyên rojnama Washington Post, Obama biryar daye ku 13 hezarên din jî ji bo Afxanistanê bêne şandin. Rojnama navborî wekî çavkaniya agahiyên xwe derdorê Wezareta Parastinê destnîşan dike û dide xuyakirin ku Obama li ser vê babetê ti daxuyanî ne daye. Ew 12 hezar leşkerên bahsa mijarê ji hêzên alîkar, wekî endezyar, personelê tendurustiyê û pisporên sîxuriyê pêk tên û tê gotin ku ew kes wê beşdarî çalakiyên çekdarî nebin.

Ji aliyekî ve Obama niha li ser stratejiyek nû ji bo Afxanistanê dixebite û ji aliyê din ve zexta li ser wî mezintir dibe. Alîgirên komarger ji wî dixwazin ku ew hejmara leşkerên li Afxanistanê zêdetir bike û li aliyê din jî gelek kesên ji partiya wî, Partiya Demokrat, li dijî zêdekirina hejmara leşkeran li Afxanistanê ne.

Ji destpêkirina karê xwe wek serokê DYA'yê, Barack Obama heta niha 34 hezar leşkerên din şandin Afxanistanê û heta dawiya salê tê çaverêkirin ku ev hejmar bighijê 68 hezaran. Bi vê yekê du qatî dema dawiya desthilata Georg W. Bush leşker li Afxanistanê tên bi cih kirin.

Niha bi giştî derdora 100 hezar leşkerên Amerîkî û yên NATO'yê li Afxanistanê ne û li wir piştî ketina DYA'yê ya nav Afxanistanê, di sala 2001'an de, li dijî hêzên serhildêr û Talîbanan şer dikin. Beriya du hefteyan Şêwirmendiya Ewlekariyê ya Netewên Yekgirtî jî daxwaza berfirehkirina karê NATO'yê li Afxanistanê kiribû.

# Weqfa Bill Gates dixwaze bi Dolaran cîhanê geş bike



Bill Gates dewlemendtirin mirovê cîhanê ye

**Serwîsa Cîhanê (Rûdaw)** – Dewlemendtirîn mirovê cîhanê, milyarderê Amerîkî Bill Gates bi mezintirîn qewfa cîhanê balê dikşîne ser xwe. Niha jî weqfa wî wê bi 120 milyon Dolar hewlbide ku sektora çandiniyê li Başûrê Afrîkayê bi pêş bixe. Pere wê ji bo karên lêkolînî û perwerdeyê bên xerc kirin.

Nivê alîkariya ku pêncşema borî soza wê hat dayîn, wê ji bo lêkolînen li ser berhemên çandinê bên xerc kirin. Wekî din wê ji bo perwerdekirina cotkaran di radyoyên welatên wek Kenya, Malavî, Zambiya, Malî, Gana û Tanzanya de bernameyên perwerdeyê bên weşandin. Ji bo vî karî 10 milyon Dolar ji bo çar salan hatiye terxankirin.

Weqfa ku di sala 1999'an de hat avakirin û budceya wê salane 300 milyon Dolar e, bi 30,2 milyar Dolar sermiyan mezintirîn weqfa cîhanê ye û wek armanca xwe ya sereke alîkariya pêşketinê û têkoşîna li dijî nexweşiyan li seranserê cîhanê dide xuya kirin. Weqfa avakerê şîrketa Microsoft ê Bill Gates, Bill & Melinda Gates Foundation di sê salên borî de 1,4 milyar Dolarên Amerîkî ji bo pêşketin û zêdekirina berhemên cotkarên biçûk li Afrîka û başûrê Asyayê, xerc kirin. Di tîrmeha borî de duyemîn dewlemendê cîhanê, milyarderê Amerîkî Warren Buffett 1,25 milyar Dolar alîkarî dabû vê weqfê. Buffett ê ku li gor lîsta Forbes ya dewlemendên cîhanê bi 40 milyar Dolar li paş Bill Gates di rêza dûyem de ye, biryar daye ku piraniya malê xwe bide weqfa Bill Gates û di sala borî de bi nirxê 1,8 milyar Dolaran pişkên şîrketên borsayê dabû wê weqfê.

Qehremanên li paş perdê:

# Nobela alternatîf xelatan belavdike



Alyn Ware



Catherine Hamlin li Etyopyayê alîkariya jinên ducanî dike



David Suzuki

**Serwîsa Cîhanê (Rûdaw)** – Dema ku salane çavê her kesî vedigere ser paytexta Swêdê Stockholmê û bi Xelatên Nobelê rêz li xebatên çendîn kesayetên naskirî tê girtin, ew kes pir caran tên ji bîr kirin. Ji bo rakirina vê neheqiya li hemberî van çalakvanên bênav, rojnamevanekî Swedî beriya 30 salî xelatek din ji bo van kesan afirand ku niha bi "Xalata Nobelê ya alternatîf" tê naskirin. Îsal keseke bizîşk, yekî hawîrdorparêz û çalakvanekî kêmkirina çekan hêjayî vê xelata hatin dîtin.

Ew gelek caran di bin şertên zor de ji bo çareserkirina pirsgirêkên rojane yên mirovantiyê xebatê dikin. Dema ku li ser dikên cîhanê kesên naskirî tên xelat kirin, ew kêm caran di nava wan de ne. Ji bo ku kar û xebaten wan kesan bên naskirin û rêz ji wan re bê girtin, rojnamevanê Swêdî Jakob von Uexküll di sala 1980'an de xelata bi navê



René Ngongo

Right Livelihood Awards / Xelata ji bo Jiyanek Dirust, ku bi "Xelata Nobelê ya alternatîf" tê naskirin, damezrandin. Ev xelat pêşkeşî kes, rêxistin û nûnerên saziyên civakî ji bo xabatên wan di warê jiyanek mirovane de tê kirin.

Xelata ku pê re 2 milyon Kronê Swêdî (200 hezar Euro) tê dayîn, her sal pêşkeşî çar xelatgiran tê kirin û xelatgir wan pereyan di nava xwe de parve dikin. Sêşema borî xelatgirên îsal li Stockholmê hatin eşkerekirin. Di nav xelatgiran de biologê Kongoyî René Ngongo, çalakvanê aştiyê yê ji Zêlanda Nû Alyn Ware û bizîşka Awistralyayî ku li Etyopyayê dixebitê, Catherine Hamlin in. Xelata rûmetê jî layîqî parastnavê klîmayê yê Kanadî David Suzuki hat dîtin. Komîteya xelatdayînê di daxuyaniya li ser kesên xelatgir de eşkere kir ku "kesên xelatgir tînin ziman ku pêdivi bi çi heye, ji bo ku guherîna klîmayê bê bisînorkirin, cîhan ji çekên atomî bê paqijkirin û tedawîkirina mirovên bêderfet li seranserê cîhanê bê misoger kirin."

Xalata Nobelê ya alternatîf wê îsal di 4'ê qanûnê de – şeş rojan beriya dayîna Xelatên Nobelê yên fermî – di merasimek li Parlamena Swêdê pêşkeşî xelatgiran bên kirin.

# Wisif Hêlinijî dinyaya xo bedilnaye


*Wisif Hêliniji (Wisif Kaymaki) yê navin*

**Malmisanij**

**Paris** - Endamê Grûba Xebate ya Vateyi ra Wisif Hêliniji (Wisif Kaymaki), roja 16.10.2008 de, paytextê Fransa Paris de, qezayêkê trafiki de dinyaya xo bedilnaye.

Wisif, 03.12.1954 de, dewanê Pirani ra Qelbin de dadiya xo ra bibi. Gedeyiya (domaniya) ey, a dewe de viyartibi. Panc serri mektebo verên Qelbin de wendbi. Dima, seba ke imkanê keyeyê inan çin bi, o nêşawitbi mekteb. Ey, xo vero dabi piro şibi medreseyanê ciyaciyayanê Kurdistani de wendbi. Girewtişê icazeyê (diplomaya) medrese dima, reyna xo vero şibi paytextê Sûriye, Şam. Uca lise qedênayebi. Lise ra pey şibi Misir, Universiteya El-Ezherî de, qisimê rojnamegeri (gazetecilik) qedênabi. Qahire ra şibi Paris û tezê xo yew universiteya Parisi de nuştbi. Wisifi zaf baş bi erebki û franski zanayni.

O kurdperwerêko xurt, merdimêko erjaye bi. Merdimêko mutewazi, comerd û maqul. Seba milet û welatê xo, ziwanê xo zaf fedakar bi. Yeno virê mi, wexto ke mi o dawetê Kombiyayişanê Kirmancki kerdbi, zaf keyfweş bibi û ca de amebi. Dima, o yewendes Kombiyayişanê Kirmancki de amade bi. Seba ke nê serranê peyênan de boya ey weşe bi, hetê maddi ra zaf ardimê kovara Vateyi zi kerd.

Ey Kurdistan de, Şam, Qahîre û Paris de zaf feqiri û tenganeyi dibi. Heta yew deme Paris de bêkar û bêpere mendbi, vêşan mendbi û nêweş kewtbi. Nê serranê peyênan rewşa ey a mali baş bibi labelê ey feqiriya xo, merdimiya xo xo vir ra nêkerdibi; zaf kurdanê bêçareyan rê ardim kerdbi.

Wefatê ey ra pey, xebera wefatê ey gelek keyepelanê (homepage) kurdan -sey Vateonline, Netkurd, Rizgarionline- de vila biye. Keyepelê Netkurdi de seba ey defterêk abi. Gelek nas û dostanê ey û kurdanê welatperweran uca de, derheqê ey de, his û fikrê xo nuşti.

23.10.2008 de ma, embazanê Buroyê Vateyi yê Diyarbekiri û gelek nas û dostan piya, da-sey taksi û minibuse reyra cenazeya Wisifi berde dewa ey Qelbin, uca wedarite.

## Zaza û xebata neteweperweriya kurdî


**Roşan Lezgin**

Na grûba kurde ke zafane xo "kird" yan zi "kirmanc" name kena, hema vajêne ke pêru sermiyan û roşinbîrê na grûbe, destpêk ra hetani nika heme prosesanê mucadeleyê neteweperweriya kurdi de ca girewto. Heme serewedartişanê pilan yê kurdan de, ma vaji, serewedartişê Mela Selim Efendi de (1914), serewedartişê Qoçgiri de (1920), serewedartişê Şêx Seid Efendi de (1925) û serewedartişê Dêrsimi de (1937-1938) beşdar biyê. Miyanê xebata neteweperweriya kurdi ya despêkê seserra 20. de, neteweperwerê kurdi yê sey Kurdizade Ehmed Ramiz Beg, Xelil Xeyali, Dr. Nafiz Beg û Nûredin Zaza, hewna Faiq Bucak û Seid Elçi gelek namdar ê. Şexsiyetanê sey Mela Selim Efendi, Seyid Riza, Faiq Bucak û Seid Elçi dereceyê serektiye de Kurdistanê Bakûri de doza neteweperweriya kurdi rê lideriye kerda. Hewna, heme mucadeleyanê kurdayetiye yê nêmeyo peyên ê seserra 20. de û nika zi kurdê kirmanci miyanê xebata siyasi ya Kurdistani de hertim aktif ê.

Labelê eke çend kesi bê zi, nê serranê peyênan de tay kurdê zazayi estê ke vanê "Ma kurd nêyê", xo tena sey "zaza" vinenê û nê wareyi de fealiyet kenê. Nê tewri de di sedemê serekeyi estê:

Sedemo yew, dewlete, goreyê politikaya xo ya vera kurdan de tayê manipulasyonan vila kena ke miyanê miletê kurdi de ciyayiye vejiyo û manewiyatê kurdan o neteweyi bişikiyo. Tayê merdimê ke na babete de falsifikasyonan vila kenê, têkiliya inan nasyonalistanê tirkan reyde, yan zi rasterast hêzê dewlete reyde esta.

Sedemê diyine, eke bi hawayêko masum, pirimitiv û binezani bo zi, reyrey hetê tayê kurdanê kurmancan ra reftariyê qijdiyayişi vera kirmancki (zazaki) û kurdanê kirmancan (zazan) de estbiy. Sey nimûneyi, tayê kurdê kurmanci gama ke vanê "kurdki", na çekuye ra qestê inan tena "kurmancki" ya. No semed ra, rey-rey sey reaksiyonêk, tayê kirmanci xo "kurd" ra wetêr sey "zaza" name kenê.

Labelê hetê prosesê tarixi ra çi rey nêdiyiyayo û nêeşnawiyayo ke na grûbe ra çi kesi xo teberê kurdan ra hesibnayo. Eksê naye, zaf eseranê kehenan de behs beno ke dimili (zazayi) kurd ê. Sey nimûneyi, Yaqûti kitabê xo yê namdarî Mu'cemul Buldan de vano, "Qeleyê inan zaf mehkem ê, qeleyê Beşnewiyan û Bohtiyan û Zewwazan resenê pê. Herçi kurdê ke eşiranê dimiliyan ra yê, zêdetir koyanê berzan ra yê."



# Yaşam Radyo de programê kirdkî (zazakî)


*Yaşam Radyo*

**Stenbol** - Programê kirdki (zazaki) Zerduştname Yaşam Radyo de dest bi weşane kerd. Yaşam Radyo İstanbul de pêla FM 89.4 ser o, bi ziwananê sey tirki, kurdki (kurmancki, kirdki/zazaki), armeniki, lazki û çend ziwananê binan weşane keno. Merdim şêno tora İnterneti ser o, adresa www.yasamradyo.com.tr de zi bigoşdaro.

Programê Zerduştnameyi programêko kulturi yo. Hetê Zerduşt Piraniji ra amade beno û bi hawayêko zindi pêşkêş beno. Program de muzikê kirdki ceniyêno, sey portre biyografiya nuştoxanê kirdan diyêna şinasnayiş, şiiran û eseranê inan ra pasaji yenê wendiş.

Her program de cematê kirdan (kurdanê zazayan) ra kesêk beno mêmanê programê Zerduştnameyi. Programê Zerduştnameyi roja şeme (cumartesi) bi saeta Tirkiya saete 20.00 dest pêbeno, hetani saete 21.00 dewam keno. Roja bine, yani roja yewşeme (pazar) saete 14.00-15.00 de tekrarê programi weşaniyeno.


Sernûserê Le Monde diplomatique Alain Gresh (Wêne: Rûdaw)

## Sernûser Alain Gresh:

# Em bi Le Monde Diplomatique kurdî gelek kêfxweş in

**Ergin Opergin**

**Paris (Rûdaw)** – Sernûserê Le Monde diplomatique Alain Gresh bi hêvî û xweşbîn e ku çapa Le Monde diplomatique ya bi kurdî bibe pencereyek cîhanî ji bo Kurdan û tînê ziman ku eger Kurd bixwazin siyasetek realist û bi berhemdar bimeşînin, divê hayê wan ji dengeyên cîhanî yên siyasetê hebe, ne tenê ji DYA'yê û Ewrûpayê û hesabê welatên weke Çîn û Rûsyayê ji bikin. Rûdawê li Parisê serdana Alain Gresh kir û nêrînên wî di derbarên çend babetên di Kurdan re têkildar, pirsîn.

***Le Monde diplomatique berê wekî kovareke pêwîst bo intelektûyelan, diplomat û siyasetkarên cîhanê dihate naskirin. Niha rola wê çawa ye?***

Bêguman rola Le Monde diplomatique ji sala 1954'an ve, sala ku hate avakirin, gelek guheriye. Berê, bi taybetî xîtabî civat û derdorên diplomat û musteşaran dikir. Piştî çend dehsalan bi temamî guherî. Hêj ji berdewam xîtabî rewşenbîran, diplomatan dike; lê belê, niha berê wê li cemawereke gelek mezintir e. wekî din hevkat şêwaza lêkdana kêşeyan jî guheriye, ji ber ku berê, me xwe bi kêşeyên diplomatîk tixûbdar kiribû, lê pê de me bala xwe da kêşeyên jeopolitîk, kêşeyên aboriya navnetewî, kêşeyên kultûra navnetewî.

***Hûn bi tenê lêkolînan belav dikin an raport û reportajan jî belav dikin?***

Em ne kovareke akademîk in, lewma em lêkolînên bi wateya xwe ya akademîk belav nakin. Em gelek reportajan belav dikin, heta me hejmara roportajan zêde kiriye. Helbet em gotarên analîzî belav dikin, lê belê ew ne lêkolînên akademîk in. Em hewl didin rojnamevaniyeke li ser bingeha zanyariyeke rasteqîne ava bikin. Îro jiyana mirovan bi agahiyên deh-çirkeyî yên li ser radyo û televizyonan dagirtî ye, ew cûre agahî pir zû winda dibin. Ji ber ku paşxane û çîrok di nav çarçoveyeke berfireh de nayê pêşkêşkirin, em dixwazin wê hêla meseleyê jî bidin. Rojnamevanek jî dikare, akademîkek jî dikare wê paşxaneyê bide.

***Va ye çapa kurdî ya Le Monde Diplomatique dest pê dike, hestên we li beramber belavbûna kovara we bi kurdî çi ne.***

Ji bo min cihê kêfxweşiyeke mezin e û ne ji ber ku edet e wiha dibêjim. Lewre cara yekem di sala 1970'an de me cih daye kêşeya Kurd di nav stûnên Le Monde diplomatique de. Yanî Kurdistan hergav cihekî giring di kovarê de girtiye. Sebaret bi rûdanên li Kurdistana Îraqê, di katekê de ku çapemeniya Fransayê nedixwast bahs lê bike, em yekem weşan bûn ku bahsa Helebçeyê kir, bêguman me bahsa rûdanên piştî 1991'an jî kir. Herwiha, sebaret bi Kurdistana Îranê me rewşa Kurdan a di hengava şoreşa Îslamî ya Îranê de nirxand; kêm jî be me bahsa Kurdên Sûriyeyê kir û bêguman me gelek caran bahsa Kurdên Tirkiyeyê jî kiriye.

***Bi ya te çapbûna Le Monde diplomatique kurdî wê bibe pencereyek bo Kurdan da ku tê re cîhanê baştir binasin?***

Ez bi xwe li hêviya vê yekê me. Îro em gelek bahsa globalîzasyonê, bahsa sirkulasyona malên ticarî dikin. Kêşe çi aborî bin çi civakî bin, bi hev ve girêdayî ne, mesela em vê pêwendiyê bi rêya kêşeya koçberiyê dibînin. Lewma giring e em vê cîhana ku em tê de dijîn, baş têbigihîn. Ji ber vê yekê ev pencereyek e bi ser cîhanê ve. Lê belê ev ne tenê pencereyeke rewşenbîrî ye, an jî bi tenê ji bo zanîna rûdanên li Hondûrasê, li Çînê an jî li cîhine din e; bêtir ji ber vê hindê ye ku tiştên ku li wir diqewimin, tesîrekê li roja me dikin, lewma wan rûdanan awayek ji awayan karigeriyek li ser rûdanên li Kurdistanê jî heye. Îro ez nizanim boçûn û pozisyona Çînê çi ye sebaret bi Kurdistanê, lê belê serincdana bi Çînê giring e ji bo Kurdan, ji bo partiyên siyasî yên Kurd û rewşenbîrên Kurd. Ji ber ku Çîn hêzek e ku her mezin dibe û îro nebe jî sibe wê roleke wê ya giring hebe li herêmê, lewma giring e mirov bizane bê ka li wir çi diqewime.

***Pûtedana Le Monde diplomatique bi kêşeya kurd vedigere kengî?***

Yekem gotar di nisana 1970'an de bi nivîsîna J. Pierre Viennot û bi sernavê "Kêşeya Kurd : Karesata neteweyeke bêdewlet" hate belavkirin û ya duyem di tebaxa 1971'an de bi nivîsîna heman bisporî û bi sernavê "Kurdistan : Neteweyeke parçekirî" hate belavkirin. Ji sala 1985'an ve ez di vê kovarê de kar dikim, lewma ez nikarim bahsa helwesta tevahiya kovarê bikim lê belê hindî ku ez kovarê dinasim, ez dikarim bêjim ku bi giştî sempatiyek beramber doz û dawekariyên Kurdan hebûye. Me hergav gotiye ku ev kêşeyeke pirr mezin e, tixûbdar nîne di nav sînorên dewletekê de, ku rehendên wê yên jeografîk û mêjûyî hene.

***We çawa kultûr û kêşeya Kurd nas kirin?***

Ji mêj ve ye ku bala min li ser Rojhilata Nêzik e, bi taybetî li ser kêşeya Filistînê û herwiha ez geriyam. Ne çûme Kurdistana Îraqê lê çûme Tirkiyeyê ; herwiha li vir pêwendiyên min çêbûn, bi taybetî digel Enstîtûya Kurdî ya Parisê ku roleke wê ya giring heye di belavkirina kultûra kurdî de. Lê dîsa dibêjim, bêyî naskirina kêşeya kurd mirov nikare ev hemû kêşe û qeyranên li Rojhilata Nêzik hilsengîne û têbigihe.

***Hun asoya çareseriya kêşeya Kurd çawa dibînin?***

Helbet ev berpirsiya gelan e ku ji bo kêşeyên xwe çareseriyan peyda bikin. Baweriya min bi xwe ew e ku divê çareserî wisa be ku hem kêrî dawekariyên gelê Kurd bê û hem jî digel rastiyên jeopolitîk bigunce. Em dikarin xewna dewleteke mezin a Kurdî bibînin û bibêjin heke yekem şerê cîhanî bi awayekî din derbas bibûya, dewleteke me ya Kurdî wê hebûya, lê belê îro rastiyeke din heye li ber me û divê kar û kiryar digel vê rastiyê be. Bi ya min hêj jî mimkin e ku dawekariyên Kurdan digel van rastiyan biguncin; ji ber ku, bi ya min, li wan welatên ku ber bi demokrasiyeke rasteqîne ve diçin, em dikarin li hêviyê bin ku mafên Kurdan bi şêwazeke rasteqîne bêne naskirin. Bi ya min, di berjewendiya herkesî de ye ku çareserî bi kêrî hemû pêkhateyan bê, yanî çawa Kurd jê razî bin, wisa jî divê Tirk û Ereb jî jê razî bin. Baweriya min bi wan çareseriyan nayê yên ku bi kêrî layenekê tên lê bi kêrî yên din nayên.

***Hûn dibêjin ku hegamoniya Amerîkayê li herêma Rojhilata Navîn heta 20 salên din wê berdewam be. Çi karigeriya vê hegamoniyê wê li ser welatên herêmê û bi taybetî li ser Kurdistanê hebe?***

Min got ev hegamonî wê berdewam be ji ber ku DYA'yê wê heta 20-30 salên din jî wekî hêza serekî bimîne. Îro rastiyeke din heye: rabûna hêzên din. Hêzên ku heta niha zêde kariger nebûn, wekî Çîn, Hindistan, Rûsya, ku maweyekê bêhêz ketibû, Brezîlya, Japonya, ev welat hemû wê bibin xwedanê rolên giring. Lewma DYA wê van rastiyan di bîra xwe de bigire û wê siyaseteke di vê çarşoveyê de bide ber xwe. Zehmet e mirov ji niha ve bizane ka ev rastî wê siyaseteke çawa bi DYA'yê bidin rêvebirin û herwiha ka karigeriya wê wê çawa be li ser Kurdistanê, lê belê her ji ber vê yekê ye ku min gava din digot, giring e ku Kurd serincê bidin van guherînan. Yanî divê Kurd bala xwe ne tenê bidin ser DYA û Ewrûpayê lê belê bidin ser Çînê, Brezilyayê û dewletên din ên ku bihêz dibin; belkî îro pir dûr diyar bin lê belê çêdibe ku sibe karigeriyeke wan a giring hebe li herêmê.

***Li gor we Amerîka pirr giringiyê dide Rojhilata Navîn û ev herêm heta qederê 30 salên din jî wê giringiya xwe ya li ser siyasetên derve ya dewletan biparêze. Gelo Herêma Kurdistanê, ku niha neft û xaza xwezayî berhem tîne, wê di van sî salan de biqîmet bibe?***

Belê bêguman. Berpirsekî Amerîkî destnîşan kiribû ku Rojhilata Navîn a Mezin, yanî herêma ku ji Fasê dest pê dike heta digihe Afxanistanê, wê ji bo DYA'yê bibe xwedanê giringiyeke biqasî ya Ewrûpaya sedsala 20'an. Herêmeke stratejîk e û herwiha petrol lê tê derxistin, lewma di navenda aboriya cîhanî de ye, lê belê di heman gavê de herêmek e ku qeyran û dubendî lê berhev dibin û zêde dibin, wekî Afxanistan, Pakistan, Kurdistan, Îraq, Lubnan, Filistîn û hwd. Ji ber vê hindê dibêjim ku dahatûya Kurdistanê bi van hemû kêşeyan ve jî girêdayî ye ; nabêjim ku divê ev hemû dubendî bi hev ve bêne girêdan, lê aşkera ye ku divê ev dubendiyên li herêmê kêm bibin, heta karigeriya wan nemîne. Mesela, di navbera hikûmeta navendî ya Bexdayê û ya Kurdistanê de kêşeya pêşeroja Kerkûkê heye. Ev hemû dibe ku sibe biteqin; an jî rêyeke din heye ew jî ew e ku em rêyên pragmatîk peyda bikin bi alîkariya cemawera navnetewî ji bo çareserkirina van kêşeyan.

***Li gor we Herêma Kurdistana Îraqê, wekî take beşa azadbûyî ya Kurdistanê, divê rêyeke çawa bide ber xwe da ku Kurdistan bi hêz bimîne?***

Destkeftên li Kurdistana Îraqê bêguman gelek giring in; wekî ku hûn dibêjin azadiyeke fireh heye. Lê di heman gavê de kêşe jî hene, ne tenê kêşeyên digel Hikûmeta Îraqê, lê belê kêşeyên navxweyî. Me dît ku di hilbijartinên dawî de partiyên nû hatine pêş, herwiha gel nerihet e ji ber cudabendiyên PDK û YNK'ê ku hemû qalib û şêweyê siyaseta li herêmê destnîşan dikin. Lewma bi ya min du şertên pêşketinê hene: yek, pêşketina navxweyî ye, ku di destê Kurdan de ye. Dixwazim balê bikêşim ser mekanîzmayên ku rê didine derhatina partiyên siyasî yên serbixwe, çapemeniyeke serbixwe û hwd. Belê ev hene, lê belê şert û merc dibe bêne baştirkirin. Du, peydakirina rêyên çareseriyan ji bo kêşeyên bi taybetî li dor Kerkûkê, ji ber ku potansiyela vê kêşeyê gelek mezin û xeternak e. Mezin e ji ber ku aliyê wê yê Kurd heye, yê Ereb heye, lê hevkat aliyê Osmanî û yê Xiristiyanî û hwd. heye. Ez nizanim çareserî wê çi be, lê belê çareserî wê bi muzakereyan be, çareserî wê bi wê hindê be ku ne tenê daxwaz û dawekariyên gelê serdest lê yên mînorîteyan, mafên her ferdekî bêne dabînkirin.

***Gelo divê Kurdistan rêyeke çawa bide ber xwe, digel wan cîranên ku nerihet in ji huzûra Kurdistanê.***

Qasî ku ez dibînim, kêşeya Kurd bêtir li Tirkiye û Îraqê heye. Ji bo ku otonomiya Kurdistana Îraqê bê naskirin û tirsa ji Tirkiyeyê jî nemîne, şert e ku Tirk bigihîne lihevhatineke navxweyî digel Kurdan..

***Gelo ew siyaseta ku hikûmeta niha ya Tirkiyeyê bi navê "pêşîvekirina pirsa Kurd" ragihand, çawa ye û wê bigihe kûderê?***

Bi ya min ev hewldaneke gelek giring e. Helbet paradoksal (nakok) e ku partiyeke Îslamî vê yekê dike, lê ne cihê heyirînê ye. Bi ya min tişteke gelek baş e jî, ji ber ku gorankariyên di nava civaka Tirkiyeyê de jî nîşan dide. Helbet, rast e ku ev hewla hikûmetê ne bêarîşe ye. Aliyê ku wekî laîk têne naskirin bi awayekî pirr hişk berhelistiyê dikin beramber bi naskirina mafên Kurdan. Herwiha birînên şerê ku 30 hezar mirî li dû xwe hiştin hene, ku gelek zehmet e bicebirin. Mesela îro PKK doza efûyekê dike, lê belê ji bo wan kesên ku xizmên wan di şer de mirine zehmet e vê yekê qebûl bikin. Proseyên wiha gelek dijwar û hesas in, lewma rêxistinên navnetewî û Netewên Yekgirtî dikarin roleke avaker bilîzin, wekî ku li Amerîkaya Navendî kirin.


Edîtorê Le Monde Diplomatique kurdî Faysal Dağlı, Alain Gresh û Sernûserê Rûdawê Ako Mihemed (Ji milê çepê) (Wêne: Rûdaw)

# "Zimanê kurdî helbestî ye!"



*Stefanie Bade dikare kurdî biaxife, bistre û govend bike* (Wêne: Rûdaw)

**Berlin (Rûdaw)** - Stefanie Bade keçeke Alman e. 27 salî ye û li Berlinê hatiye dinyayê. Tişta ku gelek keçên Kurd li Elmanyayê pêk nekirine, Stefanieya jîrek pêk aniye. Kurdî fêr bûye. Di nava civaka Alman de weki misyonerekê ji bo Kurd û Kurdistanê xebatê dike. Li derdora xwe, li ser internetê her dem piştgiriya doza Kurdan dike û hewl dide ku derewên medyayê ên li ser Kurdan pûç derxîne. Wekî din ji gelek Kurdan baştir govenda delîlo û bablekanê digire. Hinek stranên kurdî jiber dizane û ji xwe re distre. Di nav hevalên xwe yên Kurd de ji navê xwe guhertiye û wekî "Rewşen" tê naskirin.

Ya rastî heta ku bi me re bi almanî nepeyivî, me dizanî ku ew alman e jî. Pêşî nexwest ku derkeve ser medyaya Kurd û behsa çîroka xwe bike. Lê me ew qane kir. Me jê re got wê serpêhatî û tecrûbeyên te ji gelek kurdên ku ji hebûna şerm dikin re bibe dersek. Belê Stefanie Bade di derbarê van tecrûbên xwe de ji Rûdawê re axivî.

**Ez ji govenda Kurdan pir kêfxweş bûm**

Em hema yekser jê dipirsin ka ew çawa bi ser Kurdan ve vebûye, Stefanie Bade bi bişirîna xwe ve wiha dibêje,

"Min bi tesadufî li Berlinê çend Kurd nas kirin. Em li gel hev tevlî çend şev û şahiyên Kurdan bûn. Civaka Kurd gelekî bala min kişand, karekterê wan gelekî li xweşê min çû. Mêvanperweriya wan pir baş bû. Bi taybetî ez bi govenda wan ya bi hev re pir kêfxweş bûm. Sedised min jî xwest ku ez fêrî wê govendê bibim. Dîsa bi tesadûfî min agahiyek di derbarê kurseke folklorê wergirt. Li wir ez fêrî govendên Kurdan bûm. Dû re koma me ya govendê derket gelek konzert, şev û şahî û dawetan. Bi vî awayî min civaka Kurd bêtir nas kir. Demek ser de derbas bû ku min êdî nekarî ku ji nav Kurdan derkevim (dikene!)..."

Lê zêde dike ku di derbarê Kurdan de berê tu agahiyeke wê tunebûye, "Loma ez rabûm min li ser Kurd û Kurdistanê çend pirtûk jî xwendin, heta ku min Kurd piçekî nas kirin bê ka kî ne ji ku hatine..."

Em jê dipirsin ka wê bo çi sedemê xwestiye fêrî kurdî bibe. Pêşî şaş dibe. Kurdîfêrbûnê tiştekê normal dihesibîne, "Min xwest ez bêtir civaka Kurd nas bikim. Loma ez dizanim ku mifteya civakekê di zimanê wê re derbas dibe. Dû re li Berlinê ez tevlî sê çar kursên zimanê kurdî bûm. Min hewl da ku ez her fêrî zimanê kurdî bibim, gerçî ez niha jî dixwazim kurdî her pêş ve bibim..."

**Mûzika Hiphopê jî bo gelek ciwanan dikare bibe şansek bo xwenasînê**

Di berdewamiya axaftina xwe de gotinê tîne ser ciwanên Kurd ên li Ewrûpayê, "Min bala xwe dayê ku ciwanên Kurd gelekî hez ji hunermendên hiphopê Azad û Serhado dikin. Ciwan dikarin bi riya hunermendên wisa nû re koka xwe hebûna xwe bêtir nas bikin, dikarin bi xêra wan xwe bêtir seferber bikin ji bo azadiya Kurdistanê. Mûzika Hiphopê jî bo gelek ciwanan dikare bibe şansek bo xwenasînê. Ji ber ku mûzîk her tiştî nêzîk dike..."

Di dawiyê de bang li ciwanên Kurd dike ku perwerdeyeke baş bistînin û ji her tiştî re çavvekirî bin, "Qîmeta perwerdehiyê îro hê bêtir e. Yê ku diplomeke baş û îradeyeke baş hebe, dikare gelek tiştan ji bo welatê xwe jî bike. Divê jî kes û civakên din re jî vekirî bin. Divê jî kalikê xwe yê biçûk û jî dinyaya xwe ya biçûçok derkevin û li dinyaya mezin binêrin. Hingê serkeftin nêzîk dibe..."



*Fermandarên Lotikxaneyê: Yê veşartî Xaltika Fatê û yê eşkere Bavê Jînda* (Wêne: Rûdaw)

## LOTIKXANE

# "Kirin ne şerm e, gotin çima şerm be?"

**Mehmet Sebatlı** - Ev bû sê sal zêde ku ew Kurdan didin kenandin, tabûyan dişkînin, ji tiştên trajîk mîzahê derdixin û siyaseta netewî bi awayekî din dimeşînin. Ji roja pêşî heta îro ti partî, sazî, şexsiyetên Kurd nemaye ku henekên xwe bi wan nekirin e. Karê wan pêkenî ye. Ji hemû malperan cudatir weşanek bi serê xwe dikin. Li gor wan ew dixwazin "rihê netewî" bi gotinên qerfî pêşde bibin. Em behsa malpereke qerfî dikin: Lotikxane. Du xebatkarên Lotikxanê bûn mêvanên me û li ser mîzaha kurdî pirsên me bersivandin. Lê tiştê ku bala mirov dikişîne, di axaftinê de (ne wek nivîsên xwe) ciddî xûya dikirin.

Bavê Jîndar, Bavê Ronahî an Xalidê Hekarî... Ew hem ji Hekariyan e, hem jî bi rastî bavê Ronahî û Jîndarê ye. Li ser nebatan, lawiran dinivisîne û zêdetir jî zargotinan berhev dike. "Cara yekem e ku Kurdek li ser van mijaran dinivisîne.

**35 karakteran afirandiye**

Mêvanê me yê din avakerê malperê ye. Wî heta niha di malperê de 35 karakter afirandiye û hemûyan jî didomîne. Yên herî zêde tên naskirin Xaltika Fatê, Pîrkemal, Tecawizcî Coşkun, Sofî Xelef, Zugurt Axa û hwd... Naxwaze navê wî bê nivîsandin û wêneyê wî bê kişandin. Ji ber vê yekê wî pişta xwe da me, Bavê Jîndar jî berê xwe û wiha me wêneyê wan kişand. Belê sedemê xwe veşartinê bala me dikişîne: "Lotikxane jî xwe re hem dijmin û hem jî dostan peyda dike, di nava Kurdan de jî û li derveyê Kurdan jî. Bi taybetî pêkenînên ku me li ser Atatürk nivîsand gelek Tirk aciz kirin, heta em tehdît jî kirin. Lê sedemên xweveşartinê ne tenê ev in." Ji ber ku projeyekî wan a nû heye û bi riya projeyê wê derkeve pêşiya çapameniyê, wî nexwest navê xwe bide û nehişt em wêneyê wî jî bikşînin. Ji bo kesên meraqdar çend gotin: Ev kes berê bi salan bi hunera muzîkê ve mijûl bûye, du roman nivisandine, li Kölnê dijî, rojê 8 saetan kar dike û di demên din de amadekariya malperê dike. Nivisarên malperê jî sedî not ew amade dike. Lê tiştê ku me fahm nekir, kesekî ku dikare mirovan bide kenin, çima di rûniştina xwe de ewqas bêdeng dimîne. Piştê çend pirsên me yên bi israr wî xwe eşkere kir.

**"Hevirtirşê min jî Nisêbînê ye"**

Lotikên ku ew jî sala 2006'an heta îro bê navber davêje bêhtir bêhna Nisêbînê, Torê û Mêrdînê jê tê. Wî ev yek qebûl kir. Di berdewamiya gotûbêja me ya di derbarê mîzaha kurdî de wî bîbîranî ku ew 30 sal e li Almanyayê dijî û hin jî wek li gundê xwe dijî, hestên welat pê re xurt in. Bi devê xwe wî rasterast wiha got: "Hevirtirşê min jî Nisêbînê ye." Em jê taybetiyên Nisêbînê û rayên mîzaha ku ew dike, dipirsin. "Em xalanê Musa Anter in. Li Taxa Qişleyê mezin bûme. Ew tax wek Taxa Qereciyan tê naskirin. Zaroktiya min di nava wan de derbas bû. Gundê Stilê jî nêzîkê me ye. Herwiha eşîrên Edmankî û Mehmûdkî hene; wek herêma Omeriya tê naskirin. Bandora vê civatê li ser min heye."

Di berdewamiya axaftina xwe de bibîrtîne ku li herêma Omeriyan herkesî ji hev re hemû gotin digotin lê ti kes nedixeyidî.

**"Pêkenîn nebûya, Kurdan nikaribû ewqas derdan bikişanda"**

Em vedigerin ser bavê Jîndar. Ew jî jiyana Kurdan wek jiyana bi êş, bi keder, bi mirin, işkence, koç û wendabûyînê dinirxîne. "Lê belê" dibêje, "Kurd eger ji mîzahê dûrbûna, wê nemana. Li gel ewqas êş û felaketan sedemê hebûna Kurdan, pêkenîn e. Kurd ji mirinê jî, ji sewal û giyayan jî, ji mele û sofiyan jî, ji axa û sêxan jî pêkenîn derxistine. Çi bijîn, bi wî dikenin. Tişt nemaya ku Kurd pê nakenin. Ev kenî dibe enerjiya ku li ser lingên xwe bimînin."

**"Kurd bi xwe dikenin"**

Wek her netewî Kurd jî bi hinek tiştan dikenin, bi hinek tiştan digirîn. Em jî wan dixwazin ku vê yekê ronî bikin. Xaltika Fatê dest bi axaftinê dike: "Kurd beriya her tiştî bi xwe dikenin. Em jî vê yekê derdixin holê û bi me dikenin. Ti serokekî Kurd tuneye ku di derbarê wî de pêkenî tune be. Mînak Mam Celal belkî 20 pêkenî li ser wî hene." Bavê Jîndar di vê navberê de axaftina xwe amade dike. Em li wî vedigerin: "Kenîn bi axaftinê ve girêdayî ye. Mirov piştî ku hinê axaftinê bûye, di heman demî de hinê kenînê jî bûye. Zarok jî tiştekî ecêb dibînin, dikenin lê nizanin ji bo çi dikenin. Lê mezin, dema ku tiştekî tê bîra wan, dikenin. Yanî ji bo keniyê fahmkirin û serpêhatî divê."

**"Armanca me afirandina rihê netewî ye"**

Xaltika Fatê di dawiya axaftina xwe de dibêje ku ew bi gotarên xwe jî dikene. Gotin gotinê vedike û mijar diçe ser tiştên şermê... Herdu bi hev re jî bo mîzahê daxwaziya bê sînoriyê dikin. Pêşî Xaltika Fatê diaxife: "Em di pêkenînên xwe de her tiştî rexne dikin, her kesî rexne dikin, lê dijminatiyê nakin. Armanca me ya bingehîn ew e ku em bi pêkenînê rihê netewî ava bikin."

Em pirsa wêneyên jinan ên tazî dikin. Gelo ew çima van wêneyan diweşînin. Kurd nerazîbûna xwe nîşan nadin? Xaltika Fatê dîsa bersiv dide: "Na, kes nerazîbûnê nîşan nade. Ev demek e ku ez wan wêneyan êdî zêde naweşînim, lê dibînim ku ev yek dibe sedem ku hindiktir kes malperê bitikînin. Dema ku wêne hebin, mêvanên malperê jî zêde dibin. Ev jî rastiyeke Kurdan e." Bavê Jîndar: "Em tiştekî jî serê xwe nabêjin, tiştê ku heye em wî nîşan didin. Ki çi bike, em behsa wî dikin. Jin xwe tazî dike ne şerm e, ma dema ku em wê diweşînin şerm e. Kirin ne serm e, lê gotin şerm e?"

